

*Eger derfe hebin:*

*"Li Amedê, Hewlêrê û Silêmaniyê defîleya cilên kurdî çêdikim."*

8



کێ هەیە قەدەمخێر بناسێت؟

11


Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Hejmar / Nr. 134
16 Sibat / Februar 2012

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK


# Dema *serxwebûnê* hatiye!

10 / 11



Hejmara piştgirên Kurdistana serbixwe zêde dibe. Bibandortirîn karmendê kurd li Neteweyên Yekgirtî (NY), Wirya Qeredaxî, jî wiha dibîne ku êdî baştirîn dem hatiye.



**Nelson Mandela:**
"Dibe ku ez Kurdistaneke azad nebînim, lê wê generasyonek bê û dewleta Kurdistanê bibîne."

11



Penaberên Kurd di vê sermaya Brukselê de

## Li ser cadeyan radizin

6







Great Britain

## Bextiyar dixwest ji Brîtanyayê vegerê Kurdistanê lê hat kuştin

# *Birayê Bextiyar:* 100 kêr lê dabûn

**Burton/ Qeladizê (Rûdaw) –** Polîsên bajarokê Burtonê li Brîtanyayê bo dîtina sedemên kuştina Bextiyar Mîrawdelî bi lêkolînê ve mijûl in. Birayekî Bextiyar ji Rûdawê re ragihand ku Bextiyar bo Kurdistanê bilêta vegera hertimî kirîbû, lê bi 100 kêran hat kuştin.

Li gor lêkolînên pizîşkî, Bextiyar ji ber birîndarbûna milê xwe jiyana xwe ji dest daye ku şûna kêrê li ser diyar e. Berdevekê polîsên wî bajarî derbarê doza kuştina Bextiyar de got: "Em daxwazê ji hemû rûniştiyên vî bajarokî dikin ku li wêneyê Bextiyar binêrin, da ku bizanin gelo li ti cihî ew kes dîtine yan na. Di qonaxa destpêka lêkolînan de kifş bûye ku pêwendiyên Bextiyar li Burtonê berfireh bûne, ji ber ku hejmareke zêde ya Kurdan li vir dijîn."

Ji ber mirina Bextiyar jî, Kurdên wî



bajarokî şok bûn. Yek ji wan penaberên bi navê Mihemed Ehmed ku Bextiyar nas dikir, got: "Em pirr dilgiran in bi vê bûyerê û hinek agahî hene dibe ku mirina wî girêdayî karekî diziyê be, lê hê jî agahiyên berfirehtir nînin."

Serokê tîma lêkolîna doza kuştina Bextiyar, Back Rogers, jî got: "Em niha kar dikin da ku bizanin çi di wê apartmanê de qewimiye û hewl didin di zûtirîn demê de kujer bibînin."

Piştî bihîstina nûçeya mirina Bextiyar, kesûkarên wî li mizgefta Hacî Çermega li Qeladizê behiya wî danîne. Bextiyar berî mehekê vegeriyabû Kurdistanê û keçek ji bajarê Silêmaniyê mahr kiribû. Di duyemîn roja behiya wî de birayê Bextiyar, Mehmûd got: "Bextiyar xwe amade kiribû û dixwest bi tevahî vegerê û li Kurdistanê bijî, birayê min bilêta vegerê kirîbû, xatirê xwe ji dost û xizmên xwe li Ewropayê xwestibû."

### Bextiyar pere kom kiribû...

Mehmûdê birayê Bextiyar dibêje ku pirsgirêkên Bextiyar li Kurdistan û Ewropayê jî ligel ti kesî nebûn: "Lê li wir hinek pere kom kiribûn, da ku pê xanî ava bike û diyarî ji xizmên xwe re kiribûn. Ji bo malê dinyê ew kuştin û hemû tiştên wî birin."

Bextiyar ev 9 sal in li Brîtanyayê dijiya. Ji xeynî wî bira û çendîn pismam û xizmên wî li wir dijîn. Derbarê şêweya kuştina wî jî, birayê wî Mehmûd got: "Polîsan dest bi lêkolînê kiriye û nizanin çawa hatiye kuştin û tenê dizanin ku bi kêrê hatiye kuştin û zêdeyî sed kêran lêdane."

Bajarokê Burton yek ji wan bajarokan e ku hejmareke zêde ya penaberên kurd lê dijîn, hejmara wan nêzîka 1500 in.



# 13 sal in Ocalan li Girava Îmraliyê ye

» Beriya serokê PKKê Abdullah Ocalan, di zindana Girava Îmraliyê de Serokwezîrê berê Adnan Menderes û du wezîrên wî û Yilmaz Guney jî girtî mabûn.

**Hewlêr (Rûdaw) -** Girava Îmraliyê, ku rûberê wê 10 kîlometroyên çargoşe ne û dikeve nava Behra Marmarayê, bi girtîgeha xwe navdar e. Ev girav ji 15ê Sibata 1999ê ve bûye cihê zindankirina Serokê PKKê Abdullah Ocalan. Beriya wî jî çendîn siyasetmedar û Yilmaz Guney jî li wir mane.

Îmralî ji sedsala çardehan şûn de ketiye bin desthilata Osmaniyan. Ji sedsala heftan a berî zayînê xelk tê de jiyane, navê wê yê kevin Ayagon bû. Girava Îmraliyê demeke dirêj di bin desthilata Bîzansan û Roman de bû.

Jiyana xelkê vê giravê ji berê ve li ser çandina pîvazan û nêçîrkirina masiyan bû. Piştî peymana Lozanê di sala 1923ê de, ev girav bi tevahî hat valakirin. Dûre di serdema Komara Tirkiyeyê de zindanek li vê giravê hat çêkirin.

Ji Cotmeha 1935ê ve cihê dêra Roman li vê giravê bû zindan û 50 girtî veguhastin vê zindanê. Piştî reva zindaniyên çîçanî, navê vê giravê derket.

Girava Îmraliyê di dema borî de cihê fermandariya hêzên deryayî yên Tirkiyeyê bû. Lê îro zindaneke taybet lê hatiye avakirin. Serokwezîrê Tirkiyeyê Adnan Menderes, wezîrê derve Fatih Ruştu Zorlu, wezîrê darayî Hasan Polatakan li wir hatine darvekirin. Derhênerê kurd Yilmaz Guney ji wê zindanê reviya û çû Parîsê. Zindaniyên wê demê li wir bi çandiniyê ve mijûl dibûn û berhemên xwe dişandin Stenbolê û bajarên din.

Piştî ku Abdullah Ocalan ji aliyê Tirkiyeyê bi alîkariya dezgehên sîxuriyê yê Amerîka û Îsraîlê li Kenyayê hat revandin, ew li Girava Îmraliyê bi cih kirin. Ji hingî ve zindaniyên din, ku heya wê çaxê li kargeha sabûn û amadekirina



xwarinên qutîkirî li wir kar dikirin, ji wê zindanê hatin veguhastin, Ocalan bû tekane girtiyê giravê. Lê par çend girtiyên din di çarçoveya proseya "rêvekirina demokratîk" de birin wê giravê.

Girava Îmralî di serdema Osmaniyan de bi navê girava Emîr Elî dihat binavkirin, ji ber ku serokê Osmanî yê ku ev girav ji Roman stand, navê wî Emîr Elî bû. Demekê nahiyeyek bû ser bi Mudanyayê. Di sala 1913ê de 250 mal, dibistanek û 3 dêr li wir hebûn, herwiha li wê giravê 1200 Romî dijiyan, Romanan jê re digotin Kolalimanos.

Abdullah Ocalan di zindana Îmralî de, ji xeynî zextên li ser, ji ber atmosfera giravê çend caran rastî bêhnçikîn û nexweşiyên din hatiye. Herwiha li vê zindanê radyoyeke FM û pirtûkxaneyeke Ocalan a piçûk hene, her li wir jî çend pirtûk nivîsandine. Ji xeynî parêzeran û birayê wî Mehmet Ocalan û herdu xwişkên wî Havva û Fatma, piştî proseya "rêvekirina demokratîk" li ser çareserkirina Pirsgirêka Kurd ji aliyê dezgeha sîxuriyê ya Tirkiyeyê MITê danûstandin ligel wî hatine kirin. Lê piştî alozbûna rewşa navbera dewleta Tirkiyeyê û PKKê, ev 6 meh in rê li ber kesûkar û parêzerên wî tê girtin ku serdana wî bikin. Herwiha meha borî jî di çarçoveya "operasyona KCK"ê de parêzerên Ocalan hatin girtin. Lê 400 parêzerên din bo parastina wî navê xwe tomar kirin. Biryar bû Ocalan di çarçoveya "proseya rêvekirina demokratîk" de ji zindana Îmralî bihata veguhastin bo maleke taybet, lê belê prose bi giştî sekinî û niha ew endamên şanda dewleta Tirkiyeyê ku bi serokatiya serokê MITê Hakan Fîdan di sê salên borî de li Norwêcê danûstandin ligel PKKê dikirin, bi lêkolînên derbarê xwe de rûbirû ne. Lê li gor yasayên Tirkiyeyê karmendên MITê bêyî fermana serokwezîr nabe herin pêşber dadgehê. Erdogan jî heya niha ti biryarek nedaye.

Abdullah Ocalanê ku di 4ê Nîsana 1948ê de jidayik bûye, di vê rewşa niha heyî de siberoja wî bêtir nediyar e. Osman Ocalanê birayê Abdullah Ocalan di daxuyaniyeke bo Rûdawê de derbarê siberoja birayê xwe de got: "Ez di wê baweriyê de me ku Abdullah Ocalan ji Îmraliyê tê derxistin û tê azadkirin, lê zêde najî. Ew îşkencekirina wî ya vêga jî ji bo wê mebestê ye."

**Ji 27ê Tîrmeha 2011ê ve hevdîtin Ocalan ligel parêzer û malbata wî tên asteng kirin.**

Rûdaw

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



## *Şerê Cemaetê û AKPê?*

# Dijberiya dozger û MITê didome

**Hêmin Xoşnaw**

Gellek çavdêrên siyasî li Tirkiyeyê wiha şîrove dikin ku krîza niha ya navbera MITê û dozgeriya Stenbolê bi şerekî veşartî ve girêdayî ye.

Li gor van şîroveyan, dadgeh û dezgeh û polis, ligel dezgeha sîxuriya niştimanî ya Tirkiyeyê MITê, ji ber çawaniya çareserkirina Pirsgirêka Kurd di şerekî veşartî de ne. Di demekê de ku bi baweriya dezgeha yekemîn ev pirs bi rêyên emînî tê çareserkirin, lê dezgeha duyemîn wiha dibîne ku pêdiviya pirsê bi çareseriyeke aştiyane heye.

Gava serokê MITê Hakan Fîdan (bi awayê fermî jê re tê gotin şêwirmend), serokê berê yê MITê Emre Taner û cîgirê serokê MITê Afet Guneş wek gumanbar di çarçoveya dosya KCKê de bo dadgehê hatin vexwendin, daku îfadeya wan ji wan bê girtin, lê ew neçûn pêşber dadgehê, ev şerê di navbera van herdu dezgehan de kûrtir bû.

Bi baweriya profesorê alîkar li zanîngeha Dicle, Vahab Coşkun, MIT û emniyet bo zeftkirina desthilatê li ser çawaniya çareserkirina Pirsa Kurd şer dikin: "Bi baweriya emniyetê di vê qonaxê de Pirsgirêka Kurd bi danûstandinan çareser nabe û pêdiviya wê bi çareseriya ewlehî heye, lê bi baweriya MITê çareseriya ewlehî Pirsgirêka Kurd aloztir dike. Lewma çareseriya aştiyane dixwaze, bo vê yekê jî çend caran ligel PKKê gotûbêj kirin. Herdu alî hewl didin pêgeha xwe di nava desthilatê de bihêztir bikin, lewra di çareseriya Pirsgirêka Kurd de hewl didin nêrîna xwe bikin siyaset bo hikûmetê."

### Fîdan nêzîkê Erdogan e

Hakan Fîdan di sala 2009ê de bû şêwirmendê dezgeha MITê û guherîneke bingehînî xist wê dezgehê. Di dema borî de MIT hertim nêzîkî artêşê bû, lê Fîdan dezgeha xwe bi desthilata siyasî ve çespand. Fîdan kolêja leşkerî xilas kiriye û piştî ku dev ji efsertiyê berdide, dibe serokê ajansa pêşxistin û vejandina Tirkiyeyê TIKA, dûre dibe cîgirê şêwirmendê serokwezîr, piştre jî dibe şêwirmendê MITê.

Li gor agahiyên Rûdawê, Hakan Fîdan bi eslê xwe Kurd e û xelkê gundê Selman Axayê jorîn e ku girêdayî bajarokê Erdîşa ser bi Wanê ye. Lê bavê Fîdan ji zû ve ye ji warê xwe bar kiriye û koç kiriye Enqereyê. Fîdanê ku ji ber rûniştina wî ligel herdu berpirsên PKKê Mistefa Karasu û Sabrî Ok li Osloyê, bo dadgehê hat vexwendin, wek dihat çaverêkirin li pêşber dadgehê amade nebû; di bersiva dadgehê de jî got: "Daku îfadeya xwe bidim, divê ji serokwezîr moletê werbigirin." Vêya jî dadgeha lêkolînê aciz kir û roja 10ê Sibatê dadgehê fermana girtina herseyan derxist. Polîsan girt ser mala Emre Taner û Afet Guneş, lê ne li mal bûn. Ew biryara dadgeha lêkolînê li hember wan sê kesan li Enqereyê karvedaneke mezin bi xwe re anî. Serokkomarê Tirkiyeyê Abdullah Gul di daxuyaniyekê de ragihand: "Dezgehek eger li gor yasa erkên xwe bicih nekiribin tê tawanbarkirin, lewma divê li van aliyan hûr bibin." Herwiha Bulent Arinç, Beşîr Atalay, Bekir Bozdag û Ahmet Davutoglu ku hemû jî karbidestên bilind ên hikûmeta AKPê ne, biryara dadgehê rexne kirin û gotin: "Hakan Fîdan di çarçoveya qanûnê de erkên xwe bicih kirine."

Lê ev ne cara yekê ye ku Fîdan rastî gef û êrişan tê. Di Tebaxa 2011ê de gava kaseta deng a gotûbêjên PKK û MITê hat belavkirin, nemaze gava gotina "birêz Abdulla Ocalan" bikar tîne, rexne lê hatin kirin, lê wê demê Erdogan got: "Birêz Fîdan li ser qewîtiya min ev kar kir, di çarçoveya rênîşanderiyan de tevgeriyaye."



> » ***Kaynak:*** Ew gengeşe şerê Cemaeta Gulen û Îsrailê li dijî MITê ye.

### Operasyon li dijî Erdogan e

Rojnamevan Cengîz Çandar dibêje ku ev krîz di nav dewletê de ye, lê derfeteke daku Tirkiye bibe dewleta yasa: "Polîs û dadgeh li dijî Ergenekonê roleke mezin lîstin, gihiştine asteke metirsîdar ku bikarin desthilatê kontrol bikin. Helwêsta dadgehê li dijî MITê operasyona li dijî Erdogan e. Ji ber Emre Taner û Hakan Fîdan bi fermana Erdogan kar kirine. Eger dixwazin Tirkiye bibe dewleta yasa, divê piştgiriya Erdogan bikin."

Nivîskar û serokê berê yê MITê Mahir Kaynak jî dibêje, şerê di navbera dadgehê û MITê de şerê alîgirên çareseriya Pirsgirêka Kurd e ligel yên ku li dijî çareseriya wê ne: "Hinek hêzên navxwe û derve naxwazin Pirsgirêka Kurd bê çareserkirin." Bi baweriya Kaynak, Tirkiye rastî gefên xeternak tê: "Li Roboskiyê, bi kuştina 34 hevwelatiyên sivîl yên Kurd, Tirkiye hat xapandin."

### Şerê Cemaeta Gulen û Îsraîl li dijî MITê

Bi baweriya çavdêrên siyasî, gengeşeya di navbera emniyet û dadgehê de ligel MITê di bingeh de kêşeya AKPê û Cemaeta Fethullah Gulen e, ji ber ku aliyê yekê di bin bandora Gulen de û yê duyemîn jî di bin bandora hikûmetê de ye. Lê hinek kesên din ji vê dûrtir dinêrin û bi baweriya wan ew gengeşe bi bûyerên deverê ve girêdayî ye û Îsrailê tometbar dikin.

Bi baweriya parlamenterê BDPê Altan Tan, hê jî zû ye aliyên veşartî yên wê kêşeyê bên naskirin: "Bi baweriya hinek kesan baskên di nav dezgeha MITê ligel hev şer dikin. Bi baweriya hinek kesên din jî ew şerê hikûmeta AKPê ligel Cemaeta Gulen û Îsrailê ye. Lê daku em bikarin xwendineke rast bikin, divê hinekên din li xwe mikur bên."

Nivîskar Mehmet Altan jî dibêje, di vê demê de nayê zanîn aktorên ciddî yên vî şerî kî ne: "Hê jî ne diyar e gelo aktorên vî şerî di nava Tirkiyeyê de ne, yan aliyekî navneteweyî yê vê kêşeyê heye û hewldaneke bo jinûve dîzaynkirina Tirkiyeyê ye."

Lê xwendineke Mahir Kaynak ya cihê heye: "Bi baweriya min ev kêşe şerê Cemaeta Gulen û Îsrailê ye li dijî MITê."

## Berdevka nûnerê NY bo Îraqê (UNAMI) Raziye Aşûr:

# Em tenê pêşniyaran dikin, rola me ya pratîkî sînordar e

*Berdevka nûnerê YN bo Îraqê `UNAMI` Raziye Aşûr, di vê hevpeyvînê de derbarê karên UNAMI li navçeyên cihê nakokiyê û meseleya Kerkûkê diaxive û dibêje ku UNAMI rola navçîkar naleyîze û dom dike: "Em nikarin biryaran bidin, lê em piştgiriya her biryarekê dikin ku îraqî li ser lihev bikin."*

**Rûdaw: Di sala 2007ê de daxwaz ji wî nûnerî Îraqê yê YN hat kirin ku li ser çareserkirina pirsa navçeyên cihê nakokiyê bixebite, ji hingî ve çi hatiye kirin?**

**Raziye Aşûr:** Ew desthilata ku dane UNAMI li Îraqê, di warê hevkarî û şîretkirina aliyên siyasî yên Îraqê de ye û di vî alî de rola YN ew e ku diyaloga siyasî li Îraqê bihêz bike û bi rastî jî ev yek kiriye. UNAMI berdewamî hewl dide ku pêwendiyan di navbera hikûmeta navendî û hikûmeta Herêma Kurdistanê û aliyên siyasî yên din de bihêz bibin û dîsa hewl dide ku pireya baweriyê di navbera wan de avabibe û bi vî rengî çareseriyekê bibînin,

**Astengî çi ne ku derbarê çareserkirina pirsa navçeyên cihê nakokiyê têne pêşiya karê UNAMI?**

UNAMI rola navçîkar naleyîze, lê piştgiriya danûstandina berpirs û ciddî dike. Lîderên siyasî yên Îraqê ji ezmûnên berê fêr bûne û ev ezmûn ligel derbasbûna demê bêtir jî geş dibe. Piştrast im ku danûstandina siyasî di navbera aliyan de berdewam dibe heya digihin çareseriyeke guncaw ku di pratîkê de bê bicihkirin. Em jî piştgiriyê didin da ku diyalog di navbera aliyan de bigihije encamekê.


Raziye Aşûr

**Projeya UNAMI bo çareseriya navçeyên cihê nakokiyê çi ye?**

Ji xeynî hevkariya aliyên siyasî yên Îraqê di aliyê teknîkî de, em li ser wan kêşeyan şopandinê dikin. Mînak, niha tîmeke me ya mafê mirovan heye ku bo çareserkirina pirsên neçareserkirî û bo parastina xelkê sivîl û kêmjimaran kar dike. Berpirsiyaretiya wê jî di situyê hikûmeta Îraq û Herêma Kurdistanê de ye. UNAMI di pratîkê de çavdêriya pêşhatan dike û ji wan binpêkirinên ku tên kirin hikûmeta Îraqê û aliyên têkildar agahdar dikin.

**Kurd derbarê kêşeya navçeyên cihê nakokiyê rexneyan li karê UNAMI digirin û dibêjin li gor xwesteka aliyê erebî ye...**

UNAMI li Îraqê li gor rênîşanderî û şiyana xwe kar dike, ew jî pêşkêşkirina pêşniyaran e û hevkarîkirina hikûmeta Îraqê ye li ser daxwaza hikûmeta Îraqê bi xwe, bi vî rengî rola UNAMI sînordar e bi wê materyala ku dikare karên xwe pê bicih bîne.

**Hinek alî dibêjin baştirîn çareserî bo meseleya Kerkûkê ew e ku bibe herêmeke serbixwe.**

Em nikarin biryarê bidin baş e yan na, lê em piştgiriya her biryarekê dikin ku îraqî bi rêya lihevkirina li serê lihev bikin.

***Hevpeyvîn: Hêvîdar Ehmed***

---

## Li Bakur hewldanên bo partiyeke muhafazakar-kurdistanî berbi encamê ve diçin

# Îslam û Kurdistan wê di navê partiyê de hebin

**Amed (Rûdaw) –** Li gorî agahiyên ku hatin bidestxistin, muhafazakarên demokrat li Bakurê Kurdistanê partiyeke Îslamî û Kurdistanî ava dikin. Pêşî wê însiyatîf ava bibe û piştre ev însiyatîf wê xwe veguherîne partiyeke siyasî. Ji bo serokatiyê navê Altan Tan derbas dibe.

Li gorî agahiyên ku Rûdawê bi dest xistine, derdorên muhafazakar û demokrat wê partiyeke muhafazakar a Kurdistanî ava bikin û kes wê ne weke sazî û dezgeh lê wê weke şexs û takekes tevli vê însiyatîfê bibin. Heta niha ji bo vê însiyatîfê 3 civîn hatine li dar xistin. Di civîna dawî ya mehek şûnde wê însiyatîf bi awayekî fermî avakirina xwe îlan bike û ji raya giştî re eşkere bike. Li gorî pêşnumeya ku Rûdawê bi dest xist, di navê însiyatîfê de wê peyvên "Îslam" û "Kurdistan" cih bigrin. Piştî xebata demekê, wê însiyatîf xwe fesih bike û bibe partiyeke siyasî. Bi awayekî prensîbî biryar hatiye girtin ku di navê partiya siyasî de jî peyvên "Îslam" û "Kurdistan" hebin. Însiyatîf wê digel doz û îhtîmala girtina partiyê jî dest ji peyva "Kurdistanê" bernede û vê peyvê ji rêziknameya xwe dernexe.


Wêne: DIHA

Nimêja înê li Nisêbînê

### 'Çavkaniyên Kurdistanê aydê Kurdan in'

Ev partiya muhafazakar-kurdistanî hemû ol, mesheb û cûdatiyên din jî weke dewlemendî dibîne û hebûna van cûdatiyan yek ji ayetên Xwedê nas dike. Însiyatîf û partî wê hewl bide ku fikr û ramana Îslam û Kurdistanê li seranserê Bakurê Kurdistanê belav bike û ehlaqeke "Îslamî û Kurdistanî" ava bike. Ji ber vê yekê di pêşnumeyê de tê gotin ku navê wê erdnîgariyê "Kurdistan" e û ew ê bi Ereb, Tirk, Ermen, Sûryanî û gelên din re jî di nava rêz û hurmetê de bijîn. Însiyatîf û partiya muhafazakar wê bi hişyariya "Tirkan çavkaniyên xwezayî yên Bakurê Kurdistanê mêtine" û banga xwedî derketina li van çavkaniyan jî li gel bike. Her wiha wê careke din perwerdehiya di medreseyên Kurdan, cemxane û tekeyan de bînin rojevê û ji bo eşkere-û ronîkirina qetlîamên Agirî, Zîlan û Dêrsimê jî raya giştî ava bikin. Kesên ku însiyatîf û partiyê ava dikin, di wê baweriyê de ne ku Komara Tirkiyeyê ji bo Kurdan perçe bikin û yekîtiya Kurdan xira bikin, Kurdan weke elewî-sûnî, milî-îslamî, kurmanc-zaza bi nav dikin û ew ê li dijî vê ferasetê têbikoşin. Însiyatîf yan jî partiya ku ava dibe, mafê xweserî, federasyon û serxwebûnê ji gelê kurd re rewa dibîne û ji bo bidestxistina van mafan jî wê têbikoşe. Tişta herî girîng jî, ev însiyatîf û partî wê hemû xebatên xwe pirranî bi zimanê kurdî bimeşîne.

### Ji bo serokatiyê navê Altan Tan derbas dibe

Partiya ku wê bê avakirin xwe alternatîfa partî û rêxistinên din ên Kurdan nabîne û hebûna wan jî weke dewlemendî dibîne. Li gor kesên ji xebatên vê partiyê haydar, yek ji daxwazên avakerên vê partiyê ewe ku ev partî û partiyên din ên Kurdan bikaribin li ser heman bingehê bên ba hev û îtifaqan, xebatên hevpar pêk bînin. Li gorî agahiyên ku Rûdawê bi dest xistin, piştî partî ava bibe, wê Altan Tan ji BDPê îstîfa bike û bibe serokê vê partiyê. Lê eger pirsgirêkek derkeve û Altan Tan vê yekê qebûl neke, wê çaxê wê ji bo serokatiyê pêşniyar ji Alîkarê Serokê Giştî yê Mazlumderê Şeyhmus Ulek re bê kirin. Di meseleya avakirin û serokatiya partiyek muhafazakar-kurdistanî de, gellek caran behsa siyasetmedarê kurd Haşîm Haşîmî jî tê kirin – Rûdawê jî behsa vê yekê kir – lê li gor agahiyên ji derdorên haydar, navê Haşîmî ji bo serokatiya vê partiya ku wê bê avakirin nayê behskirin.



### Beriya 87 salan serhildana Şêx Seîd dest pê kir

# 'Şêx Seîd dixwest li Diyarbekirê şûraya neteweyî bicivîne'

Hemû şêx û girgirên Kurdan li hemberî Mistefa Kemal bîat dikin, lê Şêx Seîd li ber Mistefa Kemal bîat nake.

*Bi munasebeta 87. salvegera Serhildana Şêx Seîd (13ê Sibatê 1925), em bi neviyê Şêx Seîd Abdulillah Firat re li ser jiyana Şêx Seîd axivîn. Firatê ku di salên 1990î de parlementerê Partiya Refahê bû, derbarê jiyana Şêx Seîd, têkiliya Şêx Seîd û Ataturk de agahiyên girîng dan. Firat herwiha derbarê nêrîna îslamî û Kurdistanî ya Şêx Seîd de agahiyên balkêş dan û got ku Şêx Mehmûdê Berzencî û Şêx Seîd ji heman malbatê ne.*

**Mistefa Kemal Ataturk û Şêx Seîd hev li ku dibînin?**

Mistefa Kemal di dema Dewleta Alî Osman de hate Diyarbekirê û bû 7. fermandarê kolorduyê. Ew çax rewşa Xanedana Osmaniyan pir zeîf bû. Mistefa Kemal çû Trablûzê, ji wir hat aliyê Sûriyê, ji Helebê hate Diyarbekirê.

**Ataturk û Şêx Seîd hev li Diyarbekirê dîtin?**

Belê. Li Diyarbekirê şêx, serokeşîr, rûsipî, dewlemendên Kurdan li hev dicivîne, bi hinekan re dostanî datîne. Bi hinekan re dibe kirîv, bi hinekan re dibe xizim. Bi wan re îrtîbateke manewî çêdike. Her yekî bi tiştekî xapand û kir mirovê xwe. Bernameyeke wî li ser Kurdan hebû. Bernameya xwe ya li ser Kurdan ji Diyarbekirê da destpêkirin, gav bi gav ev bername bi cih anî.

**Di bernameya Ataturk de çi hebû?**

Wî dizanibû wextê Kurdistan tune be, ne Osmanî çêdibe û ne jî dewleteke din çêdibe. Osmanî giş 300-400 çadir bûn. Miletê kurd ew kirin xwedî dewlet. Kurd nebûna, Tirk tune bûn. Alparslan lêxist hate Melazgirê, mala wî xira kiribûn. Lê deh hezar Kurd li hepsên xwe siwar bûn û ew ji vî halî xilas kirin. Selçûkî hatin ketin welatê Kurdistanê û pê re mezin bûn. Eger ji Kurdan nebûya, artêşa Şah Îsmaîl xwe digihand Stenbolê. Yavuz Sultan Selîm pê nedikarî. Bi quweta Kurdan, li hemberî Şah Îsmaîl bi ser ket.

**Em bên ser hevdîtina Şêx Seîd û Mistefa Kemal...**

Mistefa Kemal dema hate Diyarbekirê, li ser navê padîşahên Osmaniyan têkiliyên xwe xurt kirin. Xelkê vê derê dibêjin malbata Şêx Seîd malbateke pirr berfireh û navdar e. Xelk siyaneta wan digre, qedr û qîmeteke mezin dide wan. Şêx Seîd jî li Xinisa Erziromê dimîne. Jê re dibêjin "Heta ku tu neynî, pê re îtifaq nekî, tu nikarî netîceyek bigrî." Xeber didin Şêx Seîd efendî û ew tê Diyarbekirê. Li kolorduyê civînekê çêdikin. Di vê civînê de armanca Mistefa Kemal fêm dike.


Wêne: Rûdaw

**Armanca Mistefa Kemal çi bûye?**

Mistefa Kemal li ser Şêx Seîd efendî bîatê ferz dike. Mistefa Kemal dibêje "Eger hûn ji min re bîat bikin, ez ê li vir hikûmetekê çêbikim". Şêx Seîd efendî dibêje ev yek xelet e. Niha xanedana Alî Osmanan heye, em di muqabilê wan de nikarin tiştekî qise bikin. Ji Ataturk re dibêje eger armanca te têkoşîn be, tu xelkê Selanîkê yî, Stenbol di bin dagirkeriyê de ye, here Stenbolê rizgar bike. Em Kurd jixwe li vir têra xwe hene, em dikarin xwe rizgar bikin.

**Piştre çi dibe?**

Şêx Seîd dema ji civîna kolorduyê derdikeve, li ber derî Mehmet Begê Lîcê dibîne, jê re dibêje "Mehmed Beg, dirûma min bû dirûma Hz. Huseyîn. Min jê re bîat nekir, ew muheqeq min dikuje." Pir zane bû. Ji ber vê yekê hemû armanc û niyeta Mistefa Kemal fêm kiribû.

**Berê qet tecrûbeya şer a Şêx Seîd hebû?**

Wextê Rûs hatin ketin Kurdistanê. Hikûmeta rûsî heta Bîngolê hat. Şêx Seîd efendî ew çax di eniya Pasînê û Melazgirê de li hemberî Rûsan şer kiriye, têkoşiyaye, parastin kiriye. Li eniya şer, di nava alayên Kurdistanê de sekiniye, têkoşîneke mezin daye. Îrşat kiriye, nesîhet kiriye, ew motîveyên şer kirine. Ew ji şer re hazir kirine. Derbarê muhafezeya welat de, ew hişyar kirine.

**Lê yek ji mezinên Kurdistanê jî wê demê bi xebera Şêx Seîd nakin, guh nadinê. Encam: xûsran, mexlûbiyet.**

**Haya Şêx Seîd ji kongreya Erziromê hebû yan na?**

Jixwe mexlûbiyeta xelkê Kurdistanê bi Kongreya Erziromê çêdibe. Eger di Kongreya Erziromê de xebera Şêx Seîd bikirana, Kurd mexlûb nedibûn. Wextê kongreyê de ji Şêx Seîd re xeber tê. Dibêjin Mistefa Kemal bi navê padîşah tê, li Erziromê kongreyê çêdike. Şêx Seîd dixwaze kongreyê sabote bike. Bi heyeta kongreyê re rûdinê, ji nûnerên ku ji derveyî Kurdistanê hatine re dibêje bi Mistefa Kemal bawer nebin. Wextê ku qezenç bike, hem Îslamiyet diçe û hem jî Dewleta Alî Osman diçe. Êdî ti caran îtifaqa Misilmanan çênabe. Ji heyeta Kurdan re jî dibêje wextê hûn piştgirî bidin Mistefa Kemal, ew ê ewil her tiştî bîne serê we. Mistefa Kemal ti tiştî nade we. Lê yek mezinên Kurdistanê jî ew çax xebera Şêx Seîd nakin, guh nadinê. Encam; xûsran, mexlûbiyet. Mistefa Kemal di kongreyê de bi ser ket. Alîkariya herî mezin Kurdan jê re kir. Eger mezinên Kurdan xebera Şêx Seîd bikirana, kongre çênedibû. Mistefa Kemal selahiyet nedigirt, Mistefa Kemalê îro çênedibû û Kurd jî nediketin vê rewşê.

**Çima şêxên wê demê yên navdar piştgirî nedan Şêx Seîd efendî?**

Xelkê kurd mele û şêxan jî zaf feqîr dizanin. Îcar şêxên di nava Kurdan de jî ku îrtîbata wan bi dewletê re tune be, nikarin şêxtî bikin. Îro yên ku niha di nava Kurdan de şêxtî dikin, hemû ajanên dewletê ne. Yên nebin ajanên dewletê nikarin şêxtî bikin. Piştî ku Mistefa Kemal miwafaq bû, wî şêx teyîn kirin. Îro jî şêxên tayînkirî hene. Dewlet li pişta te nebe, tu nikarî şêxtî bikî. Duh jî wisa bû, îro jî wisa ye.

**Şêx Seîd efendî Darahênê weke paytexta Kurdistanê îlan kiribû. Çima neçû Darahênê, çima hat Pîrana Diyarbekirê û li vir serhildan ji wexta plankirî zûtir dest pê kir?**

Ew meseleya Pîranê provokasyon bû. Ajan û mirovên Mistefa Kemal li her derê Şêx Seîd dişopandin. Şêx Seîd di wî emrê xwe yê mezin de, neçar ma bê Pîranê. Ji ber ku wî xeber dabû hemû rûsipî, serokeşîr, giregir û begên Kurdan û ew vexwendibûn Diyarbekirê. Armanca Şêx Seîd ew bû ku di meha Gulanê de li Diyarbekirê şûrayeke neteweyî ya kurdî çêbike. Di wê şûreyê de bernameyekê derxe, îtifaqa Kurdan bi pêş bixe û piştre dest bi qiyamê (serhildan) bike. Eger armanca wî civandina şûrayê nebûya, çima di wî emrê xwe de, di Çileyên Zivistanê de bi hespê derkeve rê û bê Pîranê? Lê eskerê tirk bi zanebûn li Pîranê provokasyon kirin û qiyam beriya ku şûraya Kurdistanê bicive, bêyî plansazî dest pê kir.

**Li gorî hin derdoran armanca Şêx Seîd tenê Îslamiyet bû. Li gorî hin aliyan jî armanca wî tenê Kurdistan bû. Gelo Şêx Seîd bi kîjan armancê serî rakir?**

Di nav xelkê kurd de xeyrî mislim tune ne. Di nav Kurdan de zinêkar hene, qatil hene, zalim hene, diz hene, lê baweriya hemûyan bi Îslamiyetê heye. Kurdên ku gunehên zaf pîs dikin jî baweriya wan bi Îslamiyetê heye, baweriya qatilên kurd jî bi Misilmaniyê heye. Îcar eger Şêx Seîd efendî di sala 1925ê de bi ser biketa, wê çaxê ji xelkekî wiha misilman re, kîjan sîstem anîba? Ma wê Komunîzm anîba? Ma wê Kapîtalîzm anîba? Helbet wê sîstemeke îslamiyetê anîba. Îcar ku dewlet çêbûya, xelkê Şêx Seîd kî bû? Li Kurdistanê Tirk ji sedî yek bûn, Fileh ji sedî 2 bûn. Yên din sedî 95 giş Kurd bûn. Baş e, eger Şêx Seîd bi ser biketa, wê xelkê Kurdistanê giş bişanda Ewropayê û xelkê Ewropayê anîba Kurdistanê? Ma wê miletekî din anîbana vê derê? Xelkê wî Kurd bûn, dînê wî Îslam bû. Eger bi ser biketa, wê navê dewleta wî Komara Îslamî ya Kurdistanê bûya.

**Têkiliya Şêx Seîd bi Îngilîzan re hebû yan na?**

Ti têkiliya wî bi Îngilîzan re tune bû. Şêx Seîd li dijî wan Îngilîzan bû. Lê tirk îro dibêjin têkiliya wî bi Îngilîzan re hebûye. Ev derew e. Têkiliya Tirkan bi Îngilîzan re hebû, Îngilîzan ew çax ji Tirkan re 50 teyare şandin. Tirkan bi van teyareyan di qiyamê de avêtin ser serhildêran û ew tesfiye kirin. Tirkiyeyê jî dev ji Mûsil û Kerkûkê berda. Yanî eger têkiliya Şêx Seîd bi Îngilîzan re hebûya, Mûsil û Kerkûk ji destê Tirkan nediçû. Îngilîzan di serhildanê de piştgirî dan Tirkan û Tirkan jî dev ji Mûsil û Kerkûkê berda. Hemû mesele ev e.

## 'Mehmûd Berzencî û Şêx Seîd ji heman malbatê ne'

**Derbarê têkiliya Şêx Mehmûdê Berzencî û Şêx Seîd de, tu agahiyên te hene?**

Şêx Seîd ji Mehmûdê Berzencî re name dişîne. Dibêje nebî nebî tu Îngilîzan bixî Kurdistanê. Divê tu li hemberî wan şer bikî, têbikoşî. Rê nede Îngilîzan. Jixwe malbata Şêx Mehmûd Berzencî û Şêx Seîd ji heman malbatê ne. Şêx Seîd ji bavê 10. digihije Şêx Mehmûd.

*Hevpeyvîn: Bawer Çem*

## Bi aletên agirvemirandinê polîsan pêşwaziya Kurdan kirin



*Koln (Rûdaw) - Dawiya heftiya borî Kurdên rûniştvanên Berlînê dîsa li qadan bûn. Li aliyekî derdorê 70 Ereb û Kurdên Rojavayê Kurdistanê li pêş balyozxaneyên Rûsyayê û Sûriyê nerazîbûn û hêrsa xwe li dijî rejîma Beşar Esad anîn ziman. Li aliyê din derdorê 200 çalakvanên kurd li navenda Berlînê ji bo azadiya serokê PKKê Abdullah Ocalan li qadan bûn.*

*Lê tiştê balkêş di vê çalakiya ji bo azadiya serokê PKKê de ew bû ku polîsên alman aletên agirvemirandine ligel xwe anîbûn û li bendê bûn ku di çalakiya Kurdan de agir bê vêxistin. Di vê çalakiyê de agir ji aliyê Kurdan ve nehat vêxistin, lê pevçûnek kurt di navbera çalakvanên kurd û Tirkan de rû da, lê polîsan zû lihevxistin bi dawî anîn.*




**Azad Kurdî** Bruksel



# Penaberên Kurd di vê sermaya Brukselê de
# Li ser cadeyan dinivin

Li ser dîwarê pişt xwe nivîsîne "Kurdistana Îraq"

Sermaya dijwar ku nêzîk mehek dibe li Ewropayê dest pê kiriye, jiyana penaberên bê mal û hal ligel tehdîdên cidî rûbirû kiriye. Hin penaberên Kurd jî li Brukselê li ser cadeyan dinivin. Penaberekî Kurd: "8 meh dibe li ser cadeyan û di nav parkên Brukselê de dinivim." Penaberekî din ê Kurd: "2 sal dibe li Belçîka me, ne ziman dizanim, ne mafê rûniştina min heye û ne dikarim kar bikim."

Serma û seqema vê dawiyê li Ewropayê jiyana bi sedan mirovan stand. Li Brukselê bi sedan penaber, ku di nav wan de Kurd jî hene, bê cîh û cihê vehewiyanê ne û şev û roj li ser cadeyan û di nav parkan de dinivin. Her çiqas statîstîkek durist derbarê penaberên bê mal û cih nehatiye ragehandin, lê li gor texmîna saziyên sivîl, derdora 3 milyon penaberên bê mal û xanî li Ewropayê hene.

Ji ber hebûna azadî û ewlehiya siyasî ku li Herêma Kurdistanê heye, niha pirr bi dijwarî mafê penaberiyê didin Kurdên Başûrê Kurdistanê. Li bajarê Brukselê bi dehan penaberên Başûrê Kurdistanê ew çendîn meh in di doza penaberiyê de bersiva neyênî standine û mafê mayîna wan di kamp û malan de ji wan hatiye stendin û ji ber ku nikarin kar jî bikin, di nav parkan de û li ser cadeyan dinivin. Şimon D. M. Kurdekî Başûrê Kurdistanê û ji Dihokê ye û di dema 3 salan de 3 caran daxwaza mafê penaberiyê kiriye li Belçîkayê, lê her carê bersiva negatîv wergirtiye. Ew û hevalên wî naxwazin navê wan bi tevahî û wêneyê wan bê belavkirin, lê derbarê êş û elemên xwe de bo Rûdawê peyivîn.

Şimon bi dilekî xemgîn û tijî hesret ji bo Rûdawê axivî: "Sê sal in li Belçîkayê dimînim, min sê caran jî daxwaza penaberiyê kiriye, lê her sê caran bersiva negatîv dayîne min. Heşt meh dibe ez ji kampê hatime derxistin û ji wê demê şûnde li parkan û li ser cadeyan dinivim." Şimon hin şevan dibe mêvanê hevalên Kurd, lê pirr caran jî di sermaya dijwar a Brukselê de, li ser cadeyan û di nav park û rawestgehên trenê de derbas dike.

Ji ber wernegirtina mafê mayîn û penaberiyê li Ewropayê, gellek penaber bi salan li welatên Ewropayê dijîn, lê nikarin ji sedî 10ê zimanê wî welatî hîn bibin. Şimon û hevalên wî bawer in, dema mirov bersiva erênî wernegire, çawa ziman fêr dibe û rê nadin jî ku em herin navendên fêrbûna ziman. Navborî wiha dirêjî da axaftina xwe: "Li Kurdistanê jiyana min pirr xweş bû û her îmkanek min hebû, niha nikarim êdî vegerim jî, min 12 hezar Dolar mesrefa rêyê kiriye û sê sal dibe li Brukselê me, ti tiştekî min tune." Bêhêvîtî û mandîbûn ji rûmetê Şemon û penaberên din dibare.

**Li Kurdistanê jiyana min pirr xweş bû û her îmkanek min hebû, niha nikarim êdî vegerim jî, min 12 hezar Dolar mesrefa rêyê kiriye û sê sal dibe li Brukselê me, ti tiştekî min tune.**



### Xwekujî, bikaranîna madeyên hişber û vexwarina alkola zêde...

Me ligel Şimon serdana cihê vehewiyana wan li nêzîkê Komîseriya Bilind a Penaberan a ser bi Neteweyên Yekgirtî li Brukselê kir, ku di serma dijwar de şevê li wir dinivin. Hin caran xwarin û vexwarinê ji saziyên xêrxwaz distînin, lê pirr caran jî birsî dimînin: "8 Meh dibe ez li van deran dirazim û xwarin û vexwarinek pirr kêm dixwim, lê pirr caran bi zikê birsî û têhnî em dinivin." Li ser dîwarê li paş cihê nivistina xwe "Kurdistana Îraq" nivîsîbûn. Bi baweriya wan penaberên bê mal û cîh, jiyan li Kurdistanê ji ya vir gellekî xweştir û baştir e, lê ji ber sedemên taybet naxwazin vegerin Kurdistanê.

Derbarê alîkariya navend û saziyên Kurdan li Belçîkayê, wan penaberan ji Rûdawê re eşkere kirin: "Ti aliyekî ji bo me karek nekiriye û nikarin bikin jî." Henderên H. jî Kurdekî Başûrê Kurdistanê ye û zêdeyî yek sal dibe bersiva negatîv wergirtiye û ji kampê jî derxistine û divê ji Belçîkayê derkeve. Henderên bi dilekî xemgîn bo Rûdawê axivî: "Welatên Ewropayê êdî penaberan naxwazin, bahaneyan tînin û bersiva negatîv didin me. Du sal dibe li Belçîkayê dijîm, ne ziman dizanim, ne mafê rûniştinê min standiye û ne dikarim kar bikim." Navborî dibêje: "Psîkolojiya kesên wek min bi tevahî têk çûye û hêviya me bi jiyanê jî nemaye. Em şerm jî dikin vegerin nav malbat û kesûkarên xwe li Kurdistanê."

Ew çend seatan li rawestgehên Brukselê li benda pariyek nanê saziyên xêrxwaz in, lê hin car jî nagihe wan û bidest naxin. Krîza aborî welatên Ewropayê jî rûbirûyî qeyranek mezin kirine. Di sala 2011ê de ji sedî 25ê hevwelatiyên ewropî ligel gefa hejarî û xizaniyê rûbirû bûn. Bêhêvîtî, nexweşiyên psîkolojîk, xwekujî, bikaranîna madeyên hişber û vexwarina alkola zêde jî tenê çend ji pirsgirêkên berçav ên penaberên ser cadeyan in.

# Bo Welî Almanya jî nebû derman



» Nexweşiya Welî pençeşêra kezeba reş e û piştî Herêma Kurdistanê û Îranê, li Almanyayê jî çareserî nedît.

**Koln (Rûdaw) -** Gaziyê kurd yê bi navê Weliyê Heskîfî ji ber nexweşiya kezeba reş hat Almanyayê, lê li vir jî ti çareyek jê re nehat dîtin. Welî neçar ma dîsa vegerê Başûrê Kurdistanê.

Weliyê Heskîfî ku zêdeyî 35 salan ji bo tekoşîna azadiya gelê kurd xebat kiriye, bi mebeste dermankirina nexweşiya xwe, di dawiya meha Çileyê de, ji Duhokê bi alîkariya saziyeke tendirustiyê hat bajarê Almanya Hamburgê. Welî li Başûrê Kurdistanê û li Îranê li gellek nexweşxane û doktoran geriyabû lê ji bo pençeşera kezeba reş ti çareyek nedîtibû. Di Facebookê de heval û dostên Welî bi mebesta berhevkirina alîkariya maddî komek ava kirin û di nava 10 rojan de li ser bankeyê nêzîkî 15 hezar Euro pere hat civandin. Li Almanyayê nas û dostên Welî ew birin du nexweşxaneyên Hamburg û Hannoverê, lê doktorên alman jî gotin ku 11 cm ji kezeba wî ya 13 cm xeter bûye û ne mimkun e ku bê dermankirin. Piştî ku hemû xerciyên wî yên nexweşxaneyê hatin dayîn, roja 9ê Sibatê ji Firokexaneya Dusseldorfê ligel du hevalên xwe yên alîkar Welî vegeriya Başûrê Kurdistanê û roja din giha mala xwe ya li Duhokê.

Welî ji sala 1977ê ve xebatên siyasî meşandine û di sala 1991ê de ji ber teqîna mayînê lingê xwe yê çepê wenda kiribû. Nexweşiya kezeba reş nêzîka salek bi Welî re derketibû. Welî ji Bakurê Kurdistanê ji Heskîfê ye, zewicî ye û keçeka wî ya 4 salî û kurekî wî yê 2 salî hene.

## Kurdekî ku ev 19 sal in li Almanyayê ye, niha bi dersînorkirinê re rû bi rû ye

# Hay ji dema rûniştina xwe hebin!

**Zekî Ozmen**

Menderes E. Kurdekî ji Anatolya Navin e û ev 19 sal in li Almanyayê dijî. Xwejibîrkirineke biçûk a di dema serdana wî ya welêt a vê carê de bû sedem ku mafê rûniştina wî ya li Almanyayê bişewite û ew ji neçarî bi rêyên neyasayî vegerê Almanyayê.

Çîroka hatina Menderes E. ya Almanyayê di sala 1993yê de dest pê dike. Du salan piştî hatina xwe ya Almanyayê, ew bi jinek alman re dizewice û demek dirêj bi hev re dijî. Piştî sala 2004ê, dema ew dev ji hev berdidin, ew jî di çarçoweya Zagona Rûniştina li Almanyayê (Aufenthaltsgesetz) ya xala 31. de mafê rûniştinê distîne. Ew gellek caran dikeve nava hewildana bidestxistina hemwelatiya almanî lê ji ber hinek cezayên wî standibûn, jê re dihate gotin ku ji Îlona 2012ê û pê de ew dikare hem serî li rûniştina bê dem û hem jî serî li mafê hemwelatîbûnê bide. Ew jî bi vî awayî, bi rûniştina xwe ya bi dem, jiyana xwe ya li Almanyayê berdewam dike.

Menderes E. di dawiya Hezîrana par de ji ber hinek pirsgirêkên xwe yên malbatî, wekî çend carên din, bi rêyên zagonî diçe Anatoliya Navîn û di wê baweriyê de ye ku di 22yê Îlonê de rûniştina wî bi dawî dibe. Beyî ku vê babetê ji xwe re wekî pirsgirêk bibîne, ew jî diçe sefaretxaneya almanî ya li Enqereyê û li wir jê re dibêjin ku ew dereng maye û rûniştina wî ya Almanyayê di 9ê Îlonê de qediyaye. Menderes E. wiha behsa serdana xwe ya li sefaretxaneya almanî dike: "Li sefaretxaneyê gotin min here, emê ji te re bersivekê rêkin. Qet di serê min re derbas nedibû ku bi vê yekê mafê rûniştina min a li Almanyayê şewitiye. Heta sefaretxaneyê bersiv rêkir, derdora du mehan dom kir. Ji min re nivîsîbûn ku mafê min ê rûniştinê li Almanyayê bi dawî bûye."

> **Ji min re nivîsîbûn ku mafê min ê rûniştinê li Almanyayê bi dawî bûye.**

### Nabe rojek jî derbas bibe!

Li ser vê bersivê, tiştekî ew êdî bi rêya balyozxaneyê bike namîne û ew dikeve nava lêgerînên hatina Almanyayê. Piştî ew bi rêyên qaçax tê Almanyayê, rasterast diçe cem parêzerê xwe: "Parêzerê min bi daîreya biyaniyan re axivî, wan jî got bila yekser digel bilêta xwe ya firokeyê were cem me. Min sedî sed dizanîbû ku ez herim wir, ew ê min paşde rêkin Tirkiyeyê û ji wê yekê ez neçûm."



Li ser vê yekê parêzerê Menderes E. ji bo paşdestandina mafê rûniştina wî ya li Almanyayê serî li Dadgeha Birêveberiyê (Verwaltungsgericht) dide. Lê belê dadgeh xwe dispêrê biryareke Dadgeha Birêveberiyê ya Federal (Bundesverwaltungsgericht) a 22yê Hezîrana 2011ê û daxwaza wî red dike. Wî wextî bûyereke bi heman rengî bi serê keseka ji Viyetnamê tê û di biryarê de tê gotin ku divê ji bo dirêjkirineke nû ya mafê rûniştinê, rojek jî li ser wextê wê re derbas nebe (BVerwG, dosya: 1 C 5. 10).

Menderes E. niha bi rêya parêzerê xwe bi armanca paşdewergirtina mafê xwe yê rûniştinê biryara dadgehê ihtiraz kiriye û bêsebir li benda encameke erênî ye: "Binêrin, zarokatî û ciwantiya min li vir derbas bûye. Herî dawî ez çend mehan li welêt mam û min dîsa dît ku ez nikarim li wir bijîm. Ji wê yekê ez bi rêyên neyasayî vegeriyam Almanyayê. Ez niha wekî kesekî windabûyî me. Mafê min yê rûniştinê li vir şewitiye û ez nikarim li Tirkiyeyê bijîm."

Ew li ser sedemên ku nikare li Tirkiyeyê bijî jî, wiha pê de diçe: "Li wir hevalekî min tune ye. Ji aliyê fikrî de em gellekî dûrî hev in. Her kes li wir li gora pergalê dimeşe. Tu diçî Konyayê, bi her kolan û firoşgehên biçûk û mezin ve alên Tirkiyeyê hene. Mirov dibêjê qey ew nû ji cengê xelas bûne û serxwebûna xwe pîroz dikin. Ez li dijî faşîzmê me. Pirsek ji te tê kirin, divê tu li gor daxwaza wan bersivê bidî. Em hatine guhertin û di aliyê fikrî de jî bi rastî bûne Kurdên Ewropayê."

### "Ez êdî nikarim li Tirkiyeyê bijîm"

Derbarê sedemên israrkirina mayina xwe ya Almanyayê jî, Menderes E. dibêje ku jiyana wî ya civakî jî wekî ya civaka almanî ye û digel Kurdan gellek hevalên wî yên Alman jî hene û wiha didomîne: "Cudahiya min û ya hevalên min ên Alman tune ye û ev der bûye cihê jiyana min. Eger ez li welêt bijîm, zêdeyî panzdeh salan ji min re pêwist e heta ez adapteyî jiyana wê derê bibim. Hevalên alman li vir li min wekî Almanekî dinêrin lê belê li wir jî li min wekî yekî Alman dinêrin. Tenê ji bo meseleya azadiya fikrî û pergalê jî mabe, ez nikarim li Tirkiyeyê bijîm. Qet wê nebe pirsgirêk, eger ez li welatekî wekî Fransa, Belçîka an Hollanda bijîm lê belê li Tirkiyeyê ez nikarim."

### Haya kesî ji vê zagonê tune ye

Menderes E. yê ku ev bi salan li Almanyayê dijî lê belê ji aliyê burokratîk ve wekî kesekî nû hatibe Almanyayê û li çareseriyên zagonî digere, di dawiyê de vê bangê li Kurdên ku rûniştina wan ya bi dem li Almanyayê heye dike: "Haya kesekî ji vê zagonê tune ye. Gellek kes wê bibin qurbaniyên vê zagonê. Ev zagon ne tenê ji bo kesên li derveyî Almanyayê dijîn derbas dibe. Kî xwediyê rûniştina bi dem ya li Almanyayê be, ku rojekî jî piştî dema diyar ya rûniştinê bixwaze dema rûniştina xwe dirêj bike, wê were dersînorkirin. Gellek Kurd dikarin bi vê pirsgirêkê re rû bi rû bimînin û ji Almanyayêve werin dersînorkirin. Ji wê yekê pêwist e her kes hay ji dema rûniştina xwe hebin û pêşiya rûniştina wan biqede, serî li dirêjkirina rûniştina xwe bidin."





## Eger derfet û organîzasyon hebin:

# Li Amedê, Hewlêr û Silêmaniyê defîleya cilên kurdî

Mehmet Sebatli

Înci Hakbilen weke yekem û yekemîn jina kurd e ku li Ewropayê cilên kurdî di defîleyan de pêşkêş dike. Wê heta niha li Hamburgê, Nurnbergê, Dortmund û Hollandayê bi navê Rengên Mezopotamyayê çar defîle lidar xistine û dibêje eger jê re derfêt ben çêkirin ew amede ye li Bakur û Başûrê Kurdistanê defileyan li dar bixe.

Fikra modaya cilên kurdî beriya 30 salan ketiye serê Înci Hakbilenê, ji ew roj heta sala 2009ê wê her tim xeyal kiriye ku rojek were karibe ev xeyala xwe bike rastî. Pîrejinên kurd ên Haymanaya ser bi Enqerê dema ku cilên heftreng lixwe kirine, di rûyên xwe û eniya xwe de deqan çêkirine û keçan pereyên zîvîn di nava keziyên porên xwe de xemilandine; ev hemû tişt dibin sedem ku bi Înci Hakbilênê re fikra karê wê yê niha çêbe. Lê ji ber tunebûna derfetên aborî wê sal bi sal projeya xwe paş xistiye. Heta sala 2009ê. “Ligel hemû zehmetiyan min di sala 2009ê de hewl da ku xeyala xwe ya 30 salan pêkbînim.”

### Reng û xêzên xezayê di cilên kurdî de pirr zêde ne

Dema ku dest bi kar dike, pê re argumaneke zanyarî jî heye, wiha vedibêje: “Cilên herêmî yên gelan, reng û sembolên wan, xêzên wan kultura wan nîşanê mirov didin. Bo min lixwekirina cilan bixwe beşeke girîng a kulturê ye.” Hakbilen pirr pêwîst dibîne ku kultura kurdî derbasî nifşên pêşerojê bibe û xwe jî weke berpirsiyar dibîne di vî karî de. Li gor Hakbilenê di hemû cilên kurdî de her nexşekî, xêzekî, rengekî xwediyê destan û çîrokekê ye û dibêje, “Ji ber kurd di nava xwezayê de dijîn, reng û xêzên xezayê di cilên kurdî de pirr zêde ne.”

Di hilbijartina cilan de Hakbîlen hewl dide ku stîla hemû herêman bide ber çavan û pirr bi baldarî kar dike ku orîjinaliya cilan xirab nebe. Ew herwiha ligel stîla klasîk stîlek nû jî amade dike û di vê derbarê de dibêje: “Ez bi tena serê xwe dixebitim di dirûtin û amadekirina cilan de. Pêşî stîla cil xêz dikim, qumaş yek bi yek dibirim û bi baldarî li gor stîla plankirî didirûm. Ji ber karekî pirr giran e û pirr wext jê re diçe, jiyana min a aborî jî dixe nava zehmetiyan.”

### Rengên Mezopotamyayê dibe pire navbera do û siberojê de

Hakbilen diyar dike ku bi Projeya Rengên Mezopotamyayê wê hewl daye ku reng û xêzên kurdî bi dinyayê bide nasîn û got, “Herwiha min xwest ez pireyek di navbera nifşên do, îro û sibê de ava bikim da ku nifşên nû kultura cilan baş nasbikin. Rengên cilên me wisa dewlemend û wisa bi wate ne ku gellek hêsan e di nava modaya modern de karibin cihek girîng bibînin.”

Di yekemîn defîleya Rengên Mezopotamyayê ya sala 2009ê de Hakbilen dibêje ku gellek kesan alîkariya wê kirine. Wê got, “Ji ber ku yekemîn defîleya cilên kurdî bû gellek dostên wek Şener Yildiz û Mehmet Akbaş jî ketin nava heyecanê û di pêşkêşkirinê de ji dil alîkarî û ked dane min.”

Hakbilenê di sala 2010ê de li bajarên Almanyayê Hamburg û Nürnbergê, di 2011yê de dîsa li Hamburgê, di 7.Festîvala Jinan a Zîlanê de li Dortmundê û ya dawî li bajarê Hollandayê Nijmegenê defîle li dar xistine. Derbarê pêşerojê de jî dibêje, “ Em hewl didin ku defîleya îsal dîsa li Hamburgê li dar bixin.”

### “Modavanên kurd divê berê xwe bidin Kurdistanê“

Lê Hakbilen têr nabîne ku tenê li Ewropayê defîleya cilan pêşkêş bike, bo wê ya herî girîng û pêwîst ew e ku modavanên kurd li Kurdistanê defîleyan li dar bixin. Lewma Înci Hakbilen dibêje, “Ez amade me ku li ser xaka Kurdistanê cilên me pêşkêş bikim. Eger karsazên kurd alîkarî bidin me, an jî saziyên berpirsiyar rêya me vekin çima em li Amedê, li Hewlerê û Silêmaniyê defîleya cilên kurdî pêkneynin?”

Bi baweriya Hakbilenê ji bo pêşkêşkirina cilan dîtina keçên ciwan ên kurd ne pirsgirêk e û wiha dom dike: “Min ti zehmetî nedît ku wan têxim nava vî karî, dema dîtin em karekî cîdî dikin, bi dil û can keçên kurd hatin alîkariya me kirin û hê jî bo min dîtina wan ne pirsgirêk e.”

Piştî çar defîleyan hê nû ji Hakbilenê re sîparîşên taybet tên bo cilên kurdî û herwiha pêşiya firotina cilan jî hatiye vekirin.





# Serpil Odabaşi: *Ji ber ez Amedî bûm, ez wek gundî didîtim*

*Li Bakurê Kurdistanê dema şêwekareke jin bê pirsîn cara ewil, navê Serpil Odabaşi tê bîra mirov. Ew ji malbateke rewşenbîr a Amedî ye, li Enqerê li Zanîngeha Gazî beşa şêwekariyê xwend û bi salan mamosetiya şêwekariyê kir. Li Enqerê, Amedê, Wanê û Colemêrgê pêşangehan vekir, di Weqfa Mafê Mirovan de kar kir û bêhtir bi tundiya li dijî jin û zarokan re mijûl bû û pirsgirêkên wan di hunera xwe de nîşan da. Ew niha li Kanadayê, li bajarê Torontoyê dijî û endama Yekitiya Hunermendên Aktîvîst e.*

**We kengê û çawa dest bi şêwekariyê kir?**
Weke her zarokekê zimanê min ê yekem jî şêwekarî bû; di salên xwendina lîseyê de sêwekarî bo min weke axaftina min a xwe bixwe bû.

**Şêwekarî niha di jiyana we ya rojane de cihekî çawa digire? Çi dide we û çi tişt we ber bi we ve dibe?**
Weke ku ez ez xwe ji cihana derve birevînim, weke ku ez pirtûkek bixwînim an jî filmek temaşe bikim, şêwekarî min jî herikandina jiyana rojane ya monoton dûr dixe. Ango weke revê ye: Bi kurtahî şêwekari di jiyana min de di rêza peşî de tê.

**Gelo mirov dikare şêwekariyê çawa kategorîze bike, ango tabloyên ku bûyerên rojane yên girîng vedbêjin pirr bi bandir in an ji tabloyên ku mijarên gelemperî dirismînin zêe bi bandor in?**
Ev tişteke relatîve e, ango li gor mêzekirin û dîtinê û li gor kesan diguhere.

**Di tabloyên we de darvekirinên li Îranê, kevoka spî ya ku we şibandibû Hrant Dink û berhema we ya dawî ya derbarê komkujiya Roboskî bala mirov dikşînin. Gelo mirov dikare bêje ku hûn ew hunermend in ku zêde bala xwe dide buyerên rojane?**
Carina erê, carina na. Lê carina di çendîn tabloyên min de qet tekilî bi bûyerên rojane re tune ne.

**Li gor dîtina we tabloyên we behtir bandor li ser kîja aliyên civakê dikın? Eger hûn reaksiyonên erênî û neyênî bidin be çavan, hûn zêde kîja alî dibînin ku bal didin berhemên we?**
Ez li her aliye jiyanê dinêrim, ango bi çavekî ku tebeqeyên bindest û serdest bihev re bibîne, dinêrim. Ew aliyê serdest, jê xwedî hêz û bandorê, yên ku dixwazin bibin desthilatdar, hewiha hovîtiya desthilatdaran û ew kesên ku ve hovîtiyê bo xwe weke heqekî dibînin, bo min dibin pencereyên hunerê. Ligel gellek reaksiyonên erênî û pesnan, rexne jî tên derbarê hunera min de. Ev rexne behtir ji wan kesan tên ku ji derve li berhemên min mêze dikin, nikarin empatiyê bikin, û xwe hertim wek xwediyê tena rastiyê dibînin. Mixabin haya van kesan jê tune ku ra û fikrên wan ji şaşitiyan pê tên.



Karîkatûrek ji Serpil Odabaşi: Komkujiya gundê Roboskî

**Jin û dayîk ji bo te tên çi wateyê?**
***Jin:*** keça mirovatiyê ye; jin jî zimanê yekem yê mirovahiyê ye.

**Tundî? Salên 90î. Kurdbûn?**
"Kekê duvê me tune ye, ne wisa?"

**Dijberî?**
Vekirin û nîşandana birînê.

**Em dikarin we weke sêwekareke polîtîk binav bikin?**
Belê hûn duikarin wisa bêjin, jiber ku binavkirin û fahmkirin û nîşandanên min bêhtir li ser vê mijarê ne.

**Hem di berhemên we de û hem jî di gotarên we de bala mirov dikisîne ku hûn zêde bi zarok, jin, sewal û xwezayê ve mijûl in. Çima?**
Jiber ku weke min li jor jî got, ez bi çavên bındest û serdestan li jiyanê dinêrim. Xweza jî bûye qurbaniya sîstema ku mirovan ava kirine. Ew aiyên ku we rêz kirin, ew jî mexdûr û qurbanên ve sîstemê ne.

**Gelo sedemek taybet heye ku hûn di gellek tabloyên xwe de tundiya li dijî jinan dirismînin?**
Belê sedemek taybet heye, jiber ez jî jin im û di salên ciwantiya xwe de ez jî rastî tundiyê hatime.

**Di daxuyaniyekê de we gotibû ku jiber ez li Amedê hatime dinyayê û li wir mezin bûm, ez pergî hinek astengiyan hatim. Mebesta we çi bû bi van gotinan?**
Min demeke dirêj mamostatî kir; mînak hinek caran şagirtên min yên ku ji min hezdikirin wiha digotin: “Mamoste na, ez bawer nakim ku hûn ji Amedê bin!” Di civaka hunermendan de ez pirrî caran pêrgî nezîkatiyên wiha hatim, ango hinekan min wek “gundî” jî binav kirine. Lê ez ji çandekî bajarî hatime ku ji ev çand ji ya wan gellek kesan jî bilindtir bû. Ez ligel du birayên entellektuel mezin bûm, zarokatiya min bi xwendina prtûkên klasîk û bi temasekirina şanoyên xweş derbas bû. Lê ez di çavê wan de “gundî” bûm, û ew jî “zarokên paşa” bûn! An jî krîterek pirr girîng bû ku min lîseya Galatasaray nexwendibû. Angi bi kurtahî min li her derê nêzîkatiyên wiha dîtin.

**Hûn li Torontoyê dijîn. Ji bilî şêwekariyê hûn tevlî çi aktiviteyan dibin? Şêwekarî debara we dike?**
Belê ez li Toronto dijîm; li vir têkiliya min bi zanîngehan re heye, ez di hinek mijaran de ku min berê jî ev kar kiriye, projeyan amade dikim. Dema ez hatim îngiliziya min baş nebû, niha zimanê xwe pêş ve dibim. Na, heta niha ti car min ji şêwekariyê debara xwe nekiriye.

***Hevpeyvîn: Mehmet Sebatli***


Wênê: Rûdaw

» Em divê ji niha ve xebatê bo dewleta Kurdistanê bikin

» Bêyî hebûna lobiyekê wê Pirsgirêka Kurd her di çarçoveya xwe ya mirovahî de bimîne

» Lobiya kurdî divê li Cenevre û New Yorkê be

» NY wê buroyekê bide me eger em bi ciddî xebatê jê re bikin

## Bibandortirîn karmendê kurd li Neteweyên Yekgirtî, Wirya Qeredaxî:

# Bo Kurdistanek serbixwe niha baştirîn derfet di destê Kurdan de ye

*Wirya Qeredaxî ji sala 1991ê ve ligel Neteweyên Yekbûyî (NY) kar dike û ew niha Rêveberê Herêmî yê NY li Qazakistanê ye. Wirya Qeredaxî ku niha bibandortirîn Kurdê di nav NY de ye, di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de behsa karê xwe di nav NY de dike. Qeredaxî behsa hevdîtinên xwe ligel rêberê efsaneyê yê Başûrê Afrîkayê, Nelson Mandela dike û herwiha bangî Kurdan dike ku vê derfeta zêrîn ji dest nedin û amadekariyên Kurdistaneke serbixwe bikin.*

**Wirya Qeredaxî:**

- *Di 10ê Mijdara 1952ye de li bajarokê Kifrî li Başûrê Kurdistanê ji dayik bûye.*
- *Di endazyariya avakirinê de xwedî Master e.*
- *Di sala 1974ê de tevlî şoreşa Kurdistanê bûye û bûye Pêşmerge.*
- *Piştî şikestina şoreşê çûye Îranê.*
- *Di sala 1976ê de hatiye Hollandayê.*
- *Ji sala 1991ê ve ligel Neteweyên Yekgirtî dixebite.*

**Rûdaw: Gelo Kurdan heta niha kariye bi awayekî baş ligel NY tevbigerin?**

**Wirya Qeredaxî:** Nexêr, nekariye. Meseleya Kurdan li cem NY bêtir weke meseleyekî mirovatî tê naskirin. Eger bikeve qalibekî siyasî de, pêwîstî bi dengdanê heye û divê welatek pişevaniyê bike. Pênc endamên hertimî yên Civata Ewlekariyê ya NY hene ku mafê wan ê vetoyê (dijderketinê) heye. Berjewendiyên wan ên stratejîk li navçeyê hene û ew van berjewendiyan ligel meseleya kurdî naguherînin. Mimkune tiştek pêk bê, wekî tiştê ku li Kosoyê pêk hat ku têkiliyeke navxweyî ya wan ligel Îran yan Tirkiyeyê ava bibe û wê demê karta kurdî bibe karta joker û biryar li ser bê dayîn. Her welatê ku di vê qunaxê de meseleya kurdî bibe Civata Ewlekariyê, ez bawerim wê bê veto kirin. Lê ez bawerim ku gellek guhertin pêkhatine li Rojhilata Navîn. Lê Kurd jî divê kar bo xwe bikin û zû destpê bikin.

**Kurd divê çi bikin?**

Kurdan xebat bo vê yekê nekirine. Kurdan di vê qunaxê de bêtir xwe mijûlî meseleyên aborî kirine. Kurd bo qunaxa siyasî pêwîstî bi lobiyê heye. Ew divê lobiyekî gellekî xurt li derveyî Kurdistanê ava bikin. Divê diravekî mezin bo lobiyê terxan bikin, nabe ev lobî girêdayî partiyan bin, divê kesên akademîk û dîplomat bin ku ji têkiliyên derveyî fêm bikin, psîkolojiya wan welatên ku têde dijîn fêm bikin, rûnin şîroveya psîkolojiya siyaseta Amerîka û welatên bihêz bikin da bizanin ka di çi aliyekî de dikare bandora Kurdan li ser wan hebe. Ev lobî divê kesatiyan bibîne di nava van welatan de ku bizanin kî ji Kurdan hez dike, kî dostê Kurdan e, berjewendiya kê ligel Kurdan e, kî dijî Sûriyê ye, kî dijî Îraqê ye, kî dijî Tirkiyeyê ye û kî dostê van welatan e? Divê ew lobî van hemûyan bicivîne û bike databasekê û şîrove bike. Piştre stratejiyekê dayne ku meseleya kurdî ji aliyê siyasî ve çawa wê biçe pêş. Eger ev lobî nebe em ê her di vê çarçoveya mirovahî de bimînin.

**Bi baweriya we ev lobî divê di nava NY de be? Kurd dema behsa lobiyê dikin, rasterast berê xwe didin Washington. Gelo ev rast e, yan şaş e?**

Bi texmîna min ev lobî divê li Cenevre û New Yorkê be. Ya Washington bêtir bandore xwe li ser Hikûmeta Amerîkayê heye. Hikûmeta Amerîkayê niha girîngiyeke zêde daye Kurdan, niha Cenevre meseleya mafên mirovan tê de heye û ji aliyê siyasî jî gellekî girîng e. Herwiha li New Yorkê jî gellekî girîng e. Li New Yorkê lobiyên gellekî xurt hene, bêtiriya neteweyan li wir, cem li NY buroyên xwe hene.

**Buroyek Kurdan jî dikare li cem NY li New Yorkê hebe?**

Divê destpê bikin, ew dikarin bikin, lê divê ligel NY hemahengiyê bikin. Rast e, çar aliyên me dijminin, lê em bi vê meseleyê nikarin. Bila baweriya me hebe ku NY wê buroyekê bide me, eger em jê re xebatê bikin û bi ciddî kar li ser bikin.

**Siruşta van buroyan çawa ye?**

Ji van buroyan re dibêjin Liaison Office, yanî buroyên pêwendiyan. 6-7 Kurd dikarin li New Yorkê xaniyekî kirê bikin û destûrê ji Neteweyên Yekgirtî bistînin. Ev buro dikare zanyariyên derbarê Kurdistanê de bicivîne û bike dokument, herwiha semînaran li dar bixe. Tu ne xwediyê biryarêyî lê tu zanyariyan didî.

**Mehmûd Ebas got ezê biçim NY û emê doza naskirina dewleta Filistînê bikin, û em dizanin ku Amerika dijî vê yekê ye jî. Wan ev kir, lê naskirina xwe bi dest nexistin. Hûn dibêjin dema wê hatiye ku Kurd jî vê cesaretê bistînin, jixwe dijminên Kurdan Tirkiye û Îran gellekî biçûktirin ji dijminê Filistînê ku ew jî Amerîka ye?**

Destpêkê wê pirsgirêkan çêkin, lê ez di wê baweriyê de me ku ewê piştre razî bibin. Gotineke xweşik a Gandî heye dema got ez ê meşeke yek milyon kîlometreyî dijî Îngilîzan encam bidim. Jê pirsîn çawa? Gandî got yek milyon kîlometre ji yek pêngavê dest pê dike. Em jî divê pêngava yekemîn bavêjin. Bi baweriya min gellek dostên me yên baş hene û me ew bi başî bi kar neanîne. Komkujiya Helebce û Enfalan baştirîn belge bûn di destên me de, lê me ew bo meseleyên mirovahî bikaranîne. Ez gellek kesayetiyên mezin li ser astê Serkomar û Serokwezîran nas dikim ku dostên yekem ên Kurdan e, lê divê em wan bikar bînin, divê em buroyekê avabikin, divê em şêwirmendên biyanî jî lê bicî bikin, kesên weke Wezîrê Derve yê Fransayê Bernard Koşner ku nêzîktirîn dostê Kurdan e. Divê di vê lobiyê de rol jê re bê dayîn. Ne merce ku tenê Kurd tê de bixebitin, komeke Kurdnasan li derve hene, dikarin ew bên danîn. Eger ev lobî nebe, ez ne bawerim ku em karibin tiştekî bo Kurdistanê pêk bînin.

**Berê li vir koordînatorê karûbarên hikûmetê ligel NY hebû. Bi nerîna we tiştekî wisa girîng e?**

Gellekî girîng e, ev buroya ku bi şêweyê berê li Kurdistanê hatî avakirin dikare rolekî baştir bilîze. Pêwîste bimîne û bixin ser buroya têkiliyên derve ya Herêma Kurdistanê. Ez bawerim gellekî pêwîste ev buro bimîne.

**NY xwedî diravekî mezin e, gelo Kurdan sûd ji bernameyên NY wergirtiye?**

NY bi mebesta arîkariyê hatiye Kurdistanê, lê ne ji bo biryardayîn û hukimkirinê. NY teqneke di destê te de, divê tu forma wê bidiyê, lê ne ew forma te bide. Li Kurdistanê rola NY şaş fêm kirine û wisa dizanin ku NY xwediya biryarê ye. Hin kesan li vir NY kirine xwedî biryar, bi taybetî di meseleya Kerkûkê de. Keko rola NY ne biryardayîne. NY rêxistin ava kirine, divê bi wezaretan re bên girêdayîn. Bo mînak UNICEF, divê beşeke wê li Wezareta Perwerdeyê bê avakirin, FAW dive li Wezareta Çandiniyê bê avakirin, UNDP li Wezareta Plandanînê. Ev di warê yasayî de jî ti pirsgirêkan dernaxe. NY bi vê şêweyê tevlî hikûmetê dibe, lê ev li Kurdistanê tune. NY divê beşek be ji plana pêşxistina Kurdistanê û divê biçe nava saziyên Kurdistanê.

**Ango ev têkiliya niha li Kurdistanê ligel NY heye şaş e?**

Ya ez dizanim, tevlîbûnek ewqasî bi hêz ligel hikûmetê çênebûye. Pêwîste tevlîbûneke xurttir hebe.

Berê NY bi xwe jî daxwaz dikir ku ew bibe serperişta navçeyên nakokî li ser heyî, lê Kurdan bi giştî ev qebûl nekir.

Berî her tiştî NY nabe bibe be-

**Bo Kurdistana Îraqê gellekî girîng e ku Kurdistana Tirkiyeyê bêtir pêş bikeve, ji ber ku ew bo me pencereke gellekî girîng e berbi Ewropayê û dinyayê.**

şeke pirsgirêkê, divê bibe beşeke çareseriyê. Çareserî jî nabe NY bibîne, dive arîkariya hikûmetê bike ku çareseriyê bibîne. NY divê hemahengiyê ligel hikûmetê bike ka çi pêwîste daku ev pirsgirêka maddeya 140ê bê çareser kirin. Divê ligel karbidestên kurd rûne û planê danin, hikûmet bibêje ez li filan derê pêwîstî te me. Lê nabe NY bêje filan tişt û filan tişt şaş e. NY li vir dibe saziyek bo te, ya giring ka çawa bikarbînî.

**Têkiliyên we ligel Ad Melkert û balyozê NY li Îraqê, Martin Kobler, çawa ne?**

Ez Ad Melkert baş nas nakim, lê cîgirê wî ku kesekî Polonî ye, dostê min yê gellekî nêzîk e. Yê ku wê bê cihê Ad Melkert kesekî Almane û navê wî Martin Kobler e. Ez wî jî nas dikim, ew li Afganistanê bû. Ew gellekî şehrezaye li ser Rojhilata Navîn. Ew berê balyoz bû li Bexda, Filistîn û Sûriyê. Ew zimanê erebî baş dizane û kesekî baş e, divê gellek sûd jê bê dîtin. Ew gellekî ji xwendinê hez dike û Kurd û Ereban jî baş nas dike.

**Ez gellek kesayetiyên mezin li ser astê Serkomar û Serokwezîran nas dikim ku dostên yekem ên Kurdan e, lê divê em wan bikar bînin.**

**Fermanberên Kurd li NY gellek in?**

Nexêr, Hikûmeta Herêma Kurdistanê divê daxwaz bike ku hejmara karmendên Kurd li NY bê zêdekirin. Ev di aliyê yasayî de dibe, ji ber ku bo welatan pişk hene û niha balyozên NY li welatan hene. Pîleya min a dîwanê heye ku ev jî pileyeke bilind e. Pirr kes dipirsin çawa heta niha tu nebûyî balyoz, ez jî dibêjim ji ber piştevanê min tune. Serokkomar Kurd e, Serokê Herêma Kurdistanê Kurd e, Wezîrê Derve yê Îraqê Kurd e, niha du şeş ji me re hatiye û divê em van tiştan ji NY daxwaz bikin ku beşa me jî li NY hebe. Ev jî bo lobiya kurdî derfeteke, niha derfeteke baş bo Kurdan hatiye pêş. Ti deman ev derfet nehatiye. Bo Kurdistana Îraqê gellekî girînge ku Kurdistana Tirkiyeyê bêtir pêş bikeve, ji ber ku ew bo me pencereke gellekî girîng e berbi Ewropayê û dinyayê. Li vir wê roleke NY a girîng hebe, ji ber ku NY li Tirkiyeyê di aliyê siyasî de gellekî girîngî daye meseleya kurdî.

**Pirr caran tê gotin çima Kurd daxwaziyekê pêşkêş nakin ku Kurdistan jî bibe dewlet. Bi taybetî rapirsiya sala 2005ê, tevlî ku fermî jî nebû, lê dikare bo vê mijarê bê bikaranîn. Bi nerîna we ev derfeteka, yan hêşta dema wê maye û niha divê lobî bê avakirin?**

Niha derfet heye û li ber çavane û dibêje bigre berî ku biçe. Ez bawerim ku niha derfet hatiye, derfeteke gellekî baş e, di dîroka Kurdan de qet tiştekî wisa pêknehatiye ku li çar perçeyên Kurdistanê hikûmetên navendî lawaz bibin. Niha baştirîn derfete.

**Baştirîn derfete ku doza dewleta kurdî bikin?**

Bila lobiyê ava bikin, niha baştirîn derfete. Sibe Sûriye, Îraq, Tirkiye û Îran wê rewşa wan rûnê û meseleya kurdî wê paşde biçe. Stratejiyek Îranê li welatên dinyayê heye. Qet Amerîka destê xwe navêje Îranê. Îran hezar şeran bifiroşe Amerîkayê, ewê her temaşe bike.

**Ez bawerim ku niha derfet hatiye, derfeteke gellekî baş e, di dîroka Kurdan de qet tiştekî wisa pêknehatiye ku li çar perçeyên Kurdistanê hikûmetên navendî lawaz bibin.**

**Dema vê xwestekê hatiye?**

(Temaşeyî demjimêra destê xwe dike) Niha demjimêr yek e. Ji niha destpê bikin baştir e, lê ne çaverê bikin ku zemîn wê ava bibe.

**Zemîneyê jêre çêke, yan daxwaz bike?**

Zemîne û daxwazê bi hev re, zemîn wê li pey daxwaziyê biçe. Ji aliyê yasayî wê pirr kes dijî te rawestin, lê ev proseyeke û wê pirr kes piştevaniya te bikin. Ji ber ku gellek belge di destê te de hene û ezmûna Kurdistana Îraqê belgeyeke xurt e.

**Li gor belgenameyan, şertekî qebûlkirina endametiya Îraqê di Yekîtiya Gelan de, di sala 1931ê de, ew bû ku Îraq mafên kulturî û îdarî yên Kurdan biparêze. Gelo niha, piştî van komkujiyan, Kurd nikarin vê daxwazê pêşkêş bikin?**

Ev mafê Kurdan e, ji ber ku bo çêkirina balansa di navbera Şîe û Sunniyan de Kurdistan bi zorê bi Îraqê hatiye girêdan, ji ber ku hejmara Sunniyan li Îraqê kêm bû. Derfeteke gelleke mezin ji destê me çû. Şêx Mehmûd derfeteke mezin ji dest da û wî xwe bi Tirkan girêda. Ez bawer dikim ku niha derfeteke gellekî baş di holê de ye ku bingeha dewleta Kurdistanê bê avakirin. Ji ber ku hemû faktorên dewletbûnê hene. Serketina Kurdên Tirkiyeyê di aliyê siyasî de baştirîn belgeye ligel ezmûna Kurdistana Îraqê.

## Nelson Mandela derbarê Kurdan de:

# Kurd hêjayî dewletê ne

**Rûdaw: Dema hûn di sala 2000î de çûn Afrîka Başûr, we hewl neda berpirsên Kongreya Niştîmanî (Partiya Nelson Mandela) bibînin?**

Wirya Qeredaxî: Ez bi xwe beşeke Kongreya Niştîmanî bûm. Em weke NY di sala 1992yê de, dema ku Nelson Mandela hat azadkirin, di yekemîn hilbijartinên piştî nemana Apartheid de, em bûn çavdêrên hilbijartinan. Hilbijartineke gellekî demokratîk hat lidarxistin. Ez dikarim bêjim ku ev yek bû ji baştirîn hilbijartinên cîhanê yên ku min dîtine. Gellekî bi rêkûpêk bû û Partiya Kongreya Niştîmanî karîbû di maweyê yek salê de hemû xelkê organîze bike. Me pêşbîniyeke gellekî mezin dikir ku şer pêk bê, lê tiştek çênebû.



**»** “Ez Kurdan baş nas dikim û ew miletekî zîrek in“

**»** “Dibe ku ez Kurdistaneke azad nebînim, lê wê generasyonek bê û dewleta Kurdistanê bibîne“

**»** “Mandela ji ber gendeliyê xwe paşde kişand, ji ber nekarî himber raweste“

**Dema hûn li wir bûn, we qet Nelson Mandela dît?**

Min ew sê caran dît û behsa Kurdan jî kir. Min ew carekê di civînekê de dît, bi munasebeta roja jidayikbûna wî. Ez çûm cem wî û min silavî wî kir û min jê re got ez bi navê gelê kurd û Kurdistanê te pîroz dikim, em hêvîdarim ku rojekê em roja jidayikbûna te li Kurdistanê saz bikin. Ew gellekî keniya û got ez Kurdan baş nas dikin û hûn miletekî gellekî zîrek in. Cara duyemîn jî di sala 1994ê de bû ku hilbijartin bi dawî bûn û ew bû serok. Wî em vexwendin û dema ez çûm hundir zêrevanekî wî li derve rawestiyabû û kalaşnîkovek di destê wî de bû û kirasekî li xwe kiribû ku wêneyê Saaddam li ser bû û li serî nivîsandibû ’Seddam Huseyin em piştevaniya te dikin’. Vî tiştî gellekî ez aciz kirim û dema ez çûm cem Mandela û min destê wî girt, min got ’Medîbe (ku bi zimanê wan tê wateya Paşa), vaye ez dubare hatim cem te û min got em bi navê milletê kurd te pîroz dikin û xweziya me ye ku rojekê kesekî weke te, ku 27 salan di zîndanê de mabû, girîngiyê bide Pirsgirêka Purd’. Paşî min behsa zêrevanê wî kir, wî jî got ’hemû kesên vî welatî hêşta negihane asteke zanînê, gellek kesên me hene ku nizanin li vê cîhanê çi diqewime. Ev proseyeke û tu jê netirse ku ev zêrevan wêneyê Saddam danîbe ser sînga xwe, lê bitirse eger bibe weke Saddam’. Paşî pirsa min kir ka Pirsgirêka Kurd gihaye çi qunaxê, min jî behsa wê bo kir, wî got ’mimkune ez û tu Kurdistaneke azad nebînin, lê rojek wê bê û generasyonek wê dewleta serbixwe ya kurdî bibîne, hûn hêjayî dewletê ne, ji ber hûn milletekin ku ti carî moralê xwe ji dest nadin.’ Min ev axaftin qeydkiriye û li cem min heye. Mandela gellekî Kurd diecibandin û zêde girîngî dida neteweyan. Herwiha di sala 1997ê de jî, dema hate Sîngapûrê, ez li Taylandê bûm. Balyozê Başûrê Afrîkayê got ku Mandela vedigere welat û wê firokeya wî li Bankokê raweste û em ê bi munasebeta jidayikbûna wî şeveke biçûk jê re saz bikin. Min ew li Taylandê jî dît û ez çûm cem wî û min jê pirsî tu min nas dikî, got tu ne yê Kurdî? Min got belê. Got tu li vir çi dikî, min got ez hatime arîkariya vî xelkî bikim. Got ev karekî baş e tu dikî, ev jî weke Kurdan pêwîstiyan wan bi arîkariyê heye.

**Mimkune ez û tu Kurdistaneke azad nebînin, lê rojek wê bê û generasyonek wê dewleta serbixwe ya kurdî bibîne, hûn hêjayî dewletê ne, ji ber hûn milletekin ku ti carî moralê xwe ji dest nadin.**

**Nelson Mandela ji ber gendeliyê xwe ji Kongreya Niştîmanî paşde kişand, lê me li Kurdistanê nedît ku di asta serkirdeyên bilind de kesî xwe paşde kişandibe. Jixwe li Kurdistanê jî gendelî heye, ev welateke ku ji şoreşê derketiye rewşa îdarekirinê. Bi nerîna we, ku we ezmûna van welatên nû ji şeran derdikevin dîtiye, divê bo Kurdistanê çi bê kirin?**

Li hemû welatên ku ji şer derketine pirsgirêka gendelî û diziyê û van tiştan hebû. Ev qunaxeke û mirov divê sedemên wê bizane. Mesela me jî ev bû ku di sala 1991ê de sîstema îdarî li Îraqê rûxiya, sîstema îdarî ya Îraqê qediya û gendeliyeke mezin li Kurdistanê hişt. Partiya Baas bi xwe partiyeke gendel bû û Kurdistan bo maweyê 22 salan di bin destê wan de bû. Ti ezmûna şoreşa kurdî nebû di warê rêvebirina bajaran de, lê ezmûneke baş hebû di rêvebirina çiyan û gundan de. Li vir mirov ser bingehan radiweste, mirov nikare bêje di PDKê, yan YNKê, yan her partiyeke din de bingehên lawaz tê de hene. Ji ber bingehên mezin jî di nav wan de hene ku nerazîbûn nîşan didin, jixwe çareserkirina van pirsgirêkan bi axaftinên televizyon û şûşe şikandin û meşên mezin nabe. Ev herdu şaş in, divê komîteyeke serbixwe bê avakirin ji kesên akademîk û pispor ku kesên paqij bin û yeko yeko van pirsgirêkan çareser bikin, bi şêweyê diyaloga dûr ji kerb û tolhildanê. Divê desthilateke mezin ji wan re bê dayîn, daku kesên xirab û lawaz bên derxistin. Ev divê nîşanî xelkê bê dayîn, wê demê wê xelk bawer bike.

**Ji ezmûnên ku we dîtine, kîjanê bala we kişandiye bo dijberîkirina gendeliyê?**

Başûrê Afrîkayê ji hemûyan baştir bû, Afganistan ji hemûyan xirabtir bû. Li Başûrê Afrîkayê di sala 1998ê de ev prose hat destpêkirin, kes hatin dûrxistin û di televizyonan de hatin nîşandan û ev prose hêjî ne qediyaye, lê hatiye destpêkirin.

Azad Dîcle



# Ji neteweyên cuda futbolvan bûn "Heval"

Tîma futbolê FC Heval Euskirchen ya ku ji aliyê ciwanên kurd ve 4 sal berê li bajarê Euskirchenê hatiye damezirandin, bûye wek tîmeke navnetewî. Di kadroya FC Heval de ji bilî Kurdan, çendîn leystikvanên Tirk, Alman û Arnavûd jî hene. Serokê FC Heval Mehmet Kurtyolu jî tîma xwe wek "Tîmeke navnetewî" binav dike û dibêje, "Di antrenmanan de em bêtir bi almanî diaxivin."

Tîma futbolê FC Heval Euskirchen di meha Sibatê ya sala 2008ê de li bajarê Almanyayê Euskirchenê ya nêzîka Bonnê, ji aliyê çar ciwanên kurd ve hatiye damezirandin: Ozcan Oz, Îsa Kaya, Cahit Çelik û Sait Elmas. Heta destpêka sala 2011ê Sait Elmas rêvebirê FC Heval bû, lê ji ber giraniya karên xwe yê taybet cihê xwe da Mehmet Kurtyolu. Serokê FC Heval yê ku bi karên burokratîk re mijûl dibe Manfred Wesslingê alman e. Antrenorê wan jî heta demeke berê Manuel Rodriguezê îspanî bû, lê niha bo demeke navber leystikvanekî din antrenoriyê dike. Rêveberê FC Heval Kurtyolu di vê derbarê de daxuyand, "Em li antrenorek nû digerin."

**"Bo şampiyoniyê em ê şansa xwe biceribînin."**




Di sezona damezirandinê de FC Heval Euskirchen tevlî lîga herêmî Kreisliga C bûye û piştî sezoneke din serkeftinek balkêş nîşan dide û derbasî lîga B dibe. Ew niha di heman lîge de dileyîzin û di tabellayê de di rêza 2. de cih digirin. Li gor agahiyên ku Mehmet Kurtyolu dane Rûdawê, di lîgê de 12 tîm hene û li gor encaman niha di tabellayê de Tus Olympia Ülpenich tevlî 26 pûanan lîder e û FC Heval jî tevî 24 pûanan duyemîn e. Pûanên tîma sêyemîn Fortuna Kircheim jî 24 in. Derbarê şampiyoniya lîgê ya vê sezonê de Kurtyolu got, "Di dawiya sezonê de tenê tîmekê derbasî lîga jor dibe. Hê li pêşiya me 10 maç hene. Em ê şansa xwe biceribînin."

**Kadroya navnetewî**

Ji bilî derbasbûna lîga B di sezona 2009 û 2010ê de, FC Heval du sal li dû hev di tûrnovaya futbola salonê de heta fînalê çûye û di herdu tûrnovayan de jî bûye duyemîn. Her çiqas FC Heval Euskirchen ji aliyê Kurdan ve hatibe damezirandin û navê wê bi kurdî be jî, kadroya FC Heval ji leystikvanên navnetewî pêk tê. Mehmet Kurtyolu derbarê kadroya xwe daxuyand, "Hemû leystikvanên me 18 kes in. 4 kes Tirk in, 3 Alman û 3 heb jî Arnavûd hene. Em ji bo jihev fahmkirinê bêtir bi almanî di nava xwe de diaxivin."

Sponsorê FC Heval tune ye û Kurtyolu got ew salê carekê ji nava karsazên kurd yên Euskirchenê alîkariya maddî dicivînin.

**Kurdan damezirand, nav bi kurdî ye lê kadroya wê ji leystikvanên netewên cuda pêk tê.**




Memet Kurtyolu

# Şerm û fediya Erganisporê!



Tîma futbolê ya navçeya Amedê Erganispor roja duşema borî bû 148 roj ku di maçekî de bisernakeve. Erganispor dawiya vê heftê wisa encamek girt ku di dîroka xwe ya 74 salî de bû encama herî xirab: Li Qersê 8-0 têk çû.

Di lîga 3. de maçên hefteya 19. hatin leyîstin. Erganispora ku di lîga 3. ya Tirkiyeyê de dileyîze sezoneke pirr xirab derbas dike. Ev 5 meh zêde ne ku Ernanispor ti maçekî nastîne û serketina herî dawî di saheya xwe de Payîza borî li himberê Karssporê standibû. Erganispor û Karsspor dawiya vê heftê li Qersê li ser berfê maç kirin û Erganispor 0-8 têkçû ku ev encam di dîroka wê ya 74 salî de skora herî xirab e.

Golên Karssporê di deqeyên 15, 21, 40 û 71. de Serkan Urganci avêtin, di 49. de Ersin, 65 û 87 Ekrem û di deqeya 80. de jî Îslam avêtin.

## Rêveberê giştî yê şîrketa TOTAL a fransî:

# Girêbestên Kurdistanê ji girêbestên Bexdayê pirr baştir in

Rêveberê Giştî yê Totalê Christopher de Margerie

» Total ji bo karkirina li du zeviyan ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê gotûbêjan dike.

**Parîs (Rûdaw) -** Rêveberê giştî yê şîrketa TOTAL a fransî diyar kir ku şîrketa wan li Herêma Kurdistanê "pirr bi dîqet" berê xwe dide derfetên karkirinê û ragihand, "Girêbestên Kurdistanê pirr baştir in ji wan girêbestên ku hikûmeta navendî pêşkêşî şîrketan dike."

Rêveberê Giştî yê TOTALê, Christopher de Margerie di civîneke çapemeniyê de li Parîsê ragihand: "Kurdistan navçeyeke ku petrol û xaza yedek lê zehf e û girêbestên wê jî baştir in" û navbirî herwiha eşkere kir ku şîrketa wan li zeviyên petrolê yên Herêma Kurdistanê dinêre, da ku bizane derfeta karkirinê di wan de heye yan na. Herêma Kurdistanê ji sedî 40ê petrola yedek a Îraqê vedihewîne û niha jî bi îmzekirina girêbestekê ligel şîrketa Exxon Mobil a amerîkî Hikûmeta Îraqê aciz kiriye û heya niha hikûmeta navendî ti girêbesteke kurdan ligel şîrketên biyanî yasayî nabîne." Christopher de Margerie got: "Kurdistan di nava Îraqê de ye û divê îraqî bi xwe pirsgirêkên xwe çareser bikin."

Li gor raporan, Hikûmeta Bexdayê bi niyet Nîsana bê di firotineke vekirî de, 12 zeviyên xaz û petrolê nimayiş bike ku 7 ji wan zeviyên petrolê ne û 5ên din jî zeviyên xazê ne, û di dema borî de jî, şîrketa TOTAL girêbestek ligel Hikûmeta Îraqê îmze kiriye û her şîrketek jî ku girêbestên wê ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê hebe nikare tevlî wê proseyê bibe û derbarê wê proseyê jî, Christopher de Margerie got: "Ev ne proseyeke balkêş e û xelata veberhêneran ne ewqasî zêde ye."

Ji aliyekî din ve, çavkaniyeke nêzîk ji pîşesaziya xaz û petrola Kurdistanê kifş kir ku şîrketa TOTAL ligel Hikûmeta Kurdistanê bo karkirina li du zeviyan gotûbêjan dike.

### TOTAL li benda Exxon e

Herwiha çavkaniya berê da zanîn ku gotûbêj pirr ciddî ne û zevî jî bi navê Pulxane û Taze ne ku ketine ser sînorê navçeyên cihê nakokiyê li Bakurê Îraqê: "Danûstandin di qonaxa dawî de, lê TOTAL dixwaze vêga çavlirêya encama gotûbêjên Exxon bike."

Di Kanûna borî de, şandeke Hikûmeta Herêma Kurdistanê serdana Parîsê kir û li wir rêveberê giştî yê şaxê TOTAL a Îraqê ligel şandê civiya û di wê civînê de qala girîngiya pêşvebirina sektora çavkaniyên xwezayî ya herêmê hat kirin.




## Hikûmeta Îraqê şertên nû pêşkêşî Exxon Mobil kirine:

# An girêbesta xwe bi Herêma Kurdistanê re betal bike an jî...

» **El-Emadî:** Ne mafê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye girêbestan îmze bike!

**Rûdaw (Bexda) –** Berpirsekî bilind ê Hikûmeta Bexdayê eşkere kir ku hikûmeta wan derbarê berdewamiya karên di zeviya petrolê ya Qurna de şertên nû pêşkêşî şîrketa Exxon Mobil kirine.

Herwiha wî berpirsê îraqî eşkere kir ku şertê nû yê Bexdayê bo Exxon Mobil ew e ku ew dikarin li Başûrê Îraqê karên xwe bidomînin, bi şertekî ku girêbesta xwe ligel hikûmeta Herêma Kurdistanê betal bikin.

Rêveberê beşê molet û girêbestan li wezareta petrolê ya Îraqê Ebdilmehdî El-Emadî herwiha diyar kir ku rêveberiya projeyeke avê nêzîkî navçeya Qurna ji Exxon standine ji ber ku karên Exxon sist bûn û dereng maye, lê El-Emadî got ku ti pêwendiya vê biryara Hikûmeta Îraqê bi wê girêbestê tune ku Exxon ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê îmze kiriye.

Ev çend meh in Hikûmeta Îraqê, gefan li Exxon Mobil dike ku ger wê girêbesta ku ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê îmze kiriye, betal neke, wê girêbesta Qurnayê jê bistîne.

Ew mercên nû jî di dawiya meha borî de piştî civîneke ligel rêveberê şîrketa Exxon Mobil li Îraqê, ji aliyê Wezîrê Petrolê yê Îraqê Ebdilkerîm Lu`êbî hatin diyarkirin.

Ebdilmehdî El-Emadî got: "Bo Exxon kêmtirîn şertê me ew e ger nexwaze girêbesta Qurna ji dest bide, divê bi nivîskî me agahdar bike ku girêbesta xwe ligel Kurdistanê radiwestîne."

Yek ji nakokiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Bexdayê li ser wê girêbestê, ew e ku sê ji blokên wê ku biryar e Exxon di wan de kar bike ketine navçeyên cihê nakokiyê. El- Emadî wiha axaftina xwe qedand: "Ne ji mafê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye girêbestan îmze bike li ser zeviyên ku li derveyî sînorê Kurdistanê ne."



## Berjewendiyên cuda yên PDK û PKKê li Sûriyê

Wladimir van Wilgenburg

Krîza Sûriyê rikberiyeke nû bo pêwendiyên di navbera PDK û PKKê de bi xwe re anî. Di demekê de ku PDK piştgiriya siyasetên Tirkiyeyê derbarê Sûriyê de dike û nûnerên opozisyona Sûriyê û siyasetvanên lubnanî vedixwîne, PYD û PKK dijatiya destêwerdanên Tirkiyeyê di Sûriyê de dikin.

Her çiqasî êdî PYD jî bangeşeya wê yekê dike ku ew jî li dijî rêjîma Sûriyê ne û dixwazin Esed di desthilatê de nemîne, lê belê dibêjin ku li dijî destêwerdana derveyî ne, nemaze jî destêwerdana Tirkiyeyê. Her ji ber vêya jî bû ku lîderên PKKê ragihandin ku ew amade ne li dijî destêwerdana Tirkiyeyê di karûbarên Sûriyê de şer jî bikin. Herwiha PKK hewl dide sûd ji valahiya desthilatê li Sûriyê werbigire û di nav Kurdên li Sûriyê de rêxistin û saziyên taybet çêdike.

Ji aliyekî din ve jî partiyên ku tevî kongreya Hewlêrê bûn, ku ji aliyê PDKê dihat piştgirîkirin, bi awayekî vekirî daxwaza destêwerdana derveyî û piştgiriyê bo rûxandina rêjîma Esed dikin. Giringtinîn welat jî ku PDK pê re alîkar e, Tirkiye ye. Ev hevkarî jî ligel hewldanên hevbeş yên civata tevkariyê ya Kendavê, Yekîtiya Ereban, Tirkiye, Amerîka û welatên din yên rojavayî hevdeng e .

Pêwendiyên berdewam di navbera lîderên PDKê û hikûmeta AKPê ya Tirkiyeyê de, hene. Wek mînak di vê dawiyê de berpirsê pêwendiyên derve yê PDKê Hêmin Hewramî serdana Tirkiyeyê kir. Her çiqasî PDK û PKKê dixwestin kongreyeke neteweyî girêbidin, lê dixuye hebûna berjewendiyên cuda yên van herdu partiyan wisa dike ku niha girêdana wê kongreyê bê paşxistin. Di demekê de PDK hewl dide ku wisa li Tirkiyeyê bike zêdetir nêzîkî Kurdistanê bibe û ji Bexdayê dûr bikeve, PKK jî hewl dide navçeyeke xwebirêveber ji xwe re ava bike, da ku bikare piştgiriyeke zêdetir kom bike.

Encama vêya jî di gellek mînakan de derdikeve. Wek mînak ji aliyekî wisa dike ku PJAK agirbestê ligel Îranê rabigihîne û ji aliyekî din ve jî wisa dike ku çalakvanên PYDê li Sûriyê azadiya karkirina wan hebe. Ligel vêya jî PKK bo dinyaya derve van tiştan piştrast nake û di medyaya xwe de jî êrîşan dibe ser wan herdu welatan.

Kongreya Hewlêrê bi tundî ji aliyê PKKê hat rexnekirin û wisa hat nirxandin ku Kurdan dabeş dike. PYDê red kir ku bo vê kongreyê hatibe vexwendin. Çend rojan piştî girêdana kongreyê jî alîgirên PYDê êrîş birin ser xwepêşandaneke Kurdan li Sûriyê, ji ber ku "piştgirên Erdogan û Barzanî nikarin li vir hebin." Alîgirên PYDê wisa digotin. Ev gotin jî ron dike ku dibe di siberojê de hesasiyet di navbera PDK û PKKê de zêdetir bibin.

Ligel van hemûyan jî naxuye PDK û PKK bi rêya leşkerî şerê hev bikin. Her çiqasî Tikiye dixwaze ev biqewime. Partiyên kurdî fêr bûne ku ev tişt cemawerên wan kêm dike, herwiha dijminên wan bihêztir dike. Lewra dibe ku hesasiyet her li sînorê daxuyaniyên tund û hinek caran jî pevçûnên alîgirên herdu aliyan bimîne, lê qet nabe şerek di navbera herdu partiyan de hebe. Ji ber ku qinyata herdu aliyan bi wê yekê heye ku niha heya wek asteke diyarkirî siyasetên hev qebûl bikin.



## Sîxurî û provokasyonên dewletê û matmayiya Kurdan

Bayram Ayaz

Li Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê piştî hilbijartina 12ê Hezîranê ya sala par rewşa siyasî bi carekî tevlîhev bû. Destpêkê parlamenteriya Hatîp Dîcle îptal kirin. Pênc parlamenterên BDPê yên di zindanan de nehatin berdan. Jiber van sedeman parlamenterên BDPê û Blokê biryara boykota Meclisa Tirkiyeyê dan.

Ew nermahiya ku dema hilbijartinê hebû bi carekî bi dawî bû. Zimanê şer û dengê çekan serdest bû. Hêviyên ku dema hilbijartinê di nav Kurdan û Tirkan de peyda bûbû ku belkî sala 2011ê bibe wesîle ji bo rê li ber vekirina çareseriyeke aşitiyane, cihê xwe ji şik û gumanan re hîşt. Baweriya Kurdan şikiya, tirsa ku careka din Kurd ji aliyê dewletê û hikûmeta AKPê ve werin xapandin, her çû mezin bû. Dema hilbijartinê hatibû bihîstin ku hevkarên dewletê bi Serokê PKKê Ocalan re, bi Qendîlê û Ewrûpa re hevdîtinan pêktînin. Ev agahdarî di nav pirraniya Kurdan de hêviyekî peyda kiribû (di nav Tirkan de jî hingê wisa dijayetiyekî zêde ku jê were tirsîn û pêvejoya hevdîtinan asê bike, derneketibû holê) ku ev jî gellekî bi erênî hatibû nirxandin.

**Lê ev pêvajo hat provoke kirin û pêşî lê hat girtin.**

Di vê navberê de li hêla Farqînê nêzîkî gundê Sêdeqnê şerekî dijwar di navbera leşkeran û çekdarên PKKê de qewimî. Wê rojê DTK jî li Amedê di kongreya xwe de "Xweseriya Demokratîk" îlan kir. Ji wê demê heta îro bûyer li ser bûyeran diqewimin. Li Şemzînan, Çelê, Pîran, Sason û hin cîhên din di operasyonan de hejmareke zêde çekdarên PKKê û leşker hatin kuştin. Gellekî ji van bûyeran zikê mirov jê diêşîne û bêhna provokasyonan ji wan tê. Mirov nizane kî, çima van tiştan kir û hê jî dike. Bi baweriya me jî, di gellekî van bûyeran de destê sîxuran heye û provokasyon in.

> **Hin hêzên nava dewletê şerê desthilatê dikin û li dijî tevgera kurdî jî karên lewitî dikin.**

Roja 13ê Sibatê di daxuyaniyekê xwe de Serokê BDPê Selahattîn Demirtaş dibêje: "Ewên li Stenbolê Serapê, li Cizîrê Avahiya Xwendevanan û li Wanê bankayê şewitandin, xebatkarên MİTê ne, yên ku we bixwe di nav me de bicîhkiriye."

**Gotinên Selahattîn Demirtaş rast in.**

Dewleta Tirk hê jî ne amade ye, mafê Kurdan bipejirîne. Hinek ji rayedarên tirk carna gotinên xweş dibêjin, lê li gor wan gotinên xwe tevnagerin. Dewlet bi hemû aliyên xwe hê jî bi tevgera kurdî dileyîze! Van rojên dawî di operasyonên KCKê de derket holê ku MİTê bi sedan, (rojnamevan Avnî Ozgurel dibêje bi hezaran) sîxurên xwe di nav KCKê de bi cîh kiriye. Niha tê îddia kirin ku pirraniya bûyerên terorîstî li dijî sivîlan van sîxuran pêkanîne. Yanî sîxurên dewleta Tirk teror kirine, provokasyonan li darxistine û ev bûyer li ser Kurdan hatiye nivîsîn.

Bi vê bûyerê derket holê ku hin hêzên nava dewletê de şerê desthilatê dikin, xwestine tevgera kurd wekî alawekî bi kar bînin ji bo nakokiyên navxweyî. Ev karên lewitî jî kirine! Dezgehên dewletê wekî MIT, Emniyet û Dadgeh û siyaset hemû jî şirîkên van leyistikan in.

Derdê ser derdan em Kurd jî ser û gohên hevdu dixwin. Em rexneyên xwe li KCKê, BDPê, Qendîlê, Îmraliyê bigrin, çima ku Kurd mala xwe rêkûpêk nakin û sîxûr di nav me de lotikan davêjin. Baş e, xwediyê malê bi qisûr e, qet gunehê dizan tune ye? Em dizan paqij nekin! Binêrin dewlet hê jî dixwaze doza kurdan bi şêweyê leşkerî û sîxurî têk bide. Sedemê nesaxiyê û birînê ev e. Yanî siyaseta dewleta Tirk e.



## MİT, AKP û KCK

Ahmet DERE

Van rojan li Tirkiyeyê hin tiştên «xerîb» diqewimin. Dozgerên dewletê li dijî rayedarên sixûrên dewletê (MİT) doz vekirine û dixwazin wan bigirin bin çavan. Di dîroka komara Tirkiyeyê de ev cara yekem e ku MİT bi dozekê wiha ve rû bi rû dimîne.

Weke tê zanîn MİT hîmê dewletê diparêze. Serokê MİTê bi serokwezîr ve girêdayî kar dike û xebatên heman saziyê di xizmeta dewletê de ne. Serokê MİTê Hakan Fîdan ji aliyê R. Tayyîp Erdogan ve hatiye destnîşan kirin û kesekê nêzîkê wî ye. Hakan Fîdan weke şêwirmendê R. Tayyîp Erdogan, tevî rayedarên MİTê ligel nûnerên PKKê hevdîtin pêkanîbû. Lewre heman hevdîtin bi fermana, an jî bi destûra, Erdogan pêk hatibûn. Bi awayekê din mirov dikare bêje heman hevdîtin di navbera hikûmeta AKP û PKKê de pêk hatine.

Naha çi qewimî ku Dozgeriya Stenbolê li dijî rayedarên payebilind ên MİTê doz vekirine ? Gelo ev weke encama nakokiyekê di navbera saziyên dewletê de ye? Li gorî hin analîstan; dibe ku ev encama nakokiya di navbera Cemaeta Fethullah Gulen û AKPê de be. Dîsa, hin nivîskarên tirk dibêjin di vê bûyerê de rola Îsraîlê heye.

Derbarê vê bûyerê de nêrîn û analîzên din jî têne kirin. Li gorî min rayedarên AKPê derbare derketina vê nakokiyê de xwedî agahî bûn. Û di navbera Cemaeta Fethullah Gulen û AKPê de nakokiyên ewqas kûr tune. Herwiha, derbarê pirsgirêka kurd de jî pirr zehmet e ku mirov di navbera nêzîkatiya saziyên dewletê de nakokiyan bibîne. Herwiha ne mimkûn e ku ez tevlî nêrîna ku dibêje «Di vê bûyerê de tiliya Îsraîl heye » bibim. Ez bawer nakim ku hêzên weke Amerîka, Ewropa û Îsraîl di vê bûyerê de rolekê girtibin ser xwe.

> **Rayedarên AKPê derbarê derketina vê nakokiyê de xwedî agahî bûn.**

Dema ku ez tecrûbeyên xwe ên bi salan di ber çavan re derbas dikim, baş dibînim ku ev bûyer bi pîlan hatiye çêkirin û ketiye rojeva Tirkiyeyê. Di bingeha heman pîlanê de berjewendiyên AKPê hene û di encamê de jî ew ê pozisyona xwe xurtir bike.

Tê zanîn ku ji dawiya sala 2010ê vir ve AKP giraniya xwe daye ser meşandina siyaseta ewlekariyê û bikaranîna hêza leşkerî, polîsiye û herwiha dadî. Carna dîrekt carna jî indîrekt rayedarên AKPê xwestine bêjin «Ne saziyên dewletê û ne jî gelê tirk ji diyalogê re amade nîn e ». Bi rêya vê buyerê AKP dixwaze bi hin derdoran bide xûyakirin ku ew nikare ji pirsgirêka kurd re bi rêya diyalogê çareseriyê bibîne. Piştî vê buyerê rayedarên AKPê dikarin bi hêsanî bêjin « We dît, saziyên dadê jî destûrê nadin me ku em çareseriyeke siyasî bibînin ».

Û ji vir bi şûn de R. Tayyîp Erdogan dikare bi hêsantir siyaseta kuştin û qirkirinê weke çareseriya herî asayî bide diyar kirin.

Bila kes nebêje ku Hakan Fîdan û rayedarên MİTê zerar dibînin, bawer bikin ku dema AKP vê bûyerê pîlan kiriye, ji vê pirsgirêkê re çareseriyekê jî amade kiriye. Ne Hakan Fîdan û ne jî ti endamekî, an jî endamekê MİTê zerarê nabîne. Yên ku wê zerarê bibînin dîsa gelê kurd û derdorên aştîxwaz in.

# Eger bêjî ‘Tenduristiya min baş e!’ temenê te dirêjtir dibe



Pispor îdia dikin ku eger gava kesek ji te bipirse ka tenduristiya te çawa ye û tu bi geşbînî nûçeya rewşa xwe ya tenduristiyê jêre bêjî, wê gavê temenê te dirêjtir dibe.

Pispor derbarê mijarê de dibêjin: “Handana derûniya xwe ku saxlemiya te baş e alîkariya te dike ku zêdetir bijî.”

Li gor lêkolîneke nû, kesek dema rewşa xwe ya saxlemiyê bi başî nîşan bide û geşbîn be, li gor kesên ku bi xirabî yan wek pirr xirab behsa rewşa xwe ya saxlemiyê bikin, kêmtir metirsiya mirinê li ser wan heye.

Lêkoleran herwiha çend sedemên din jî di lêkolîna xwe de pêşkêş kirine ku girêdayî temendirêjiyê ne. Ew jî kişandina dûmanan, nexweşiyên demdirêj û bilindiya zexta xwînê ne.

Lêkolîn kifş dike ku encam li cem mêran cuda ye li gor jinan.

Li cem mêran rêjeya mirinê li cem kesên ku rewşa xwe ya saxlemiyê bi xirabî nîşan didin 3.3 caran zêdetir e ji kesên ku rewşa xwe bi başî nîşan didin.

Lê li cem jinan rêje cuda ye û rêjeya mirinê 1.9 bilindtir e ji jinên ku saxlemiya xwe bi xirabî behs dikin.

# Bila şekir jî têxin lîsteya cixare û alkolê!

Lêkolêr gihiştine wê encamê ku şekirê ku di xwarin û vexwarinan de tê bikaranîn jî ji bo tenduristiyê ne bê pirsgirêk e

Ji ber ziyanên wê yên zêde yên li ser tendirustiya mirovan, daxwaz tê kirin şekir jî bikeve lîsteya ku çixare û alkol tê de ne.

Lêkolerên zanîngeha San Francisco li Amerîkayê dibêjin “Ew şekirê ku dikeve nava hinek derman û şeraban, dibe sedemê derketina nexweşiyên demdirêj û mirina zû. Lewma divê firotina wan wek çixare û alkolan bê rêkxistin.”

Pispor diyar dikin ku ew şerab û xwarinên ku şekir di wan de heye, salane dibin sedemê mirina 35 milyon kesan li cîhanê, ev jî pirr xeternak e û divê bi rêya avêtina bacan li ser wan û pêşî li zêde xwarin û vexwarina tiştên bi sekir bê girtin. Heman pispor hişyarî jî didin ku niha cîhan bêtir ji pirgirêka kêmbûna xwarinê ji ber qelewiyê dinalîne û dibêjin: “Şekir di laş de alavê cûtinê diguherîne û zexta xwînê bilind dike û ziyanê digihîne kezebê.”

Lêkoler daxwaz jî dikin bacekî giran bikeve ser şîrketên çêkirina şerabên xazî û nirxên wan bê zêdekirin û bikaranîna wan jî tenê bo kesên temenê wan ser 17 salan re serbest be.

Lêkoleran kifş kirine ku di hundirê 50 salên bê de wê rêjeya bikaranîna şekir sê caran zêdetir bibe.



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1-Hacet û amûrek muzîkê – Ava fêkî, ava şîrîn – Bergeh, pêpelok, qat. 2- Teref, hêl, ber – Acizî, qehirîn, raberz (berepaş) – Navekî mêran. 3- Kera mê, kera jin (berepaş) – Navekî zilaman, di dîrokê de qehremanekî Kurd. 4- Pronavê sêyem – Mirîşk, zîxan – Masîgir, masîfiroş. 5- Alamet, keramet, rûdan – Heq, maf, lêhatin, minasib, hêwî. 6- Cejn, şahî – Yekane, bê berberî, şibandin. 7- Giştî, gelemperî. 8- Kesên ji Îranê – Paşde vegerandin, genimê kutayî (berepaş). 9- Lîztikek zilaman, lîztikek bi kevir yan textikên nimrokirî (berepaş) – Damar, reh, kok. 10- Anarşîst, serhildêr, xwîngerm – Ezman, kaînat.

**Serejêr:** 1- Qeder, çareserî, pêşeroj. 2- Hevalbend û alîgirên Hz. Elî – Di dîroka Yewnanî de xwedayê evînê. 3- Ava poz û bêvilê, ava ku ji pozê meriv diherike – Xwarin û vexwarinên şîrîn. 4- Lêkirin, avakirin. 5- Navekî zilaman – Piştî duayê tê gotin (berepaş). 6- Di notayê de nîşana sekin û rawestînê – Nîşana elementa Osmîyûm. 7- Aqilmendî, şêwr û mişêwr. 8- Ne baş, ne xirab, îdare – Navekî zilaman, kesê keseran dikşîne. 9- Gotinek pirs û ecêbmayînê, destnîşankirina tiştekî – Genim, ceh û zadê hêrayî (berepaş). 10- Xanima malê, kebanî, jina malê – Yan, yan jî. 11- Xweda, xwedê, reb. 12- Deng, awaz, his (berepaş). 13- Navekî zilaman, zavayê Hz. Mihemed. 14- Deşo, ava cil û kincan, ava girikî. 15- Nexêr, nabe, qebûlnekirin. 16- Fêkîyek darane, fêkîyek piçûk, spî, sor û reş.



**Bersivên hejmara 133**

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | N | A | S | I | R | R | E | Z | A | Z | Î | ■ | A | Î | ■ | Î |
| 2 | Î | M | A | N | ■ | A | V | I | S | ■ | L | E | R | Z | A | N |
| 3 | H | Û | N | ■ | Î | D | ■ | K | ■ | M | A | ■ | D | A | X | E |
| 4 | A | D | E | F | N | A | C | ■ | M | E | X | L | Û | Q | A | T |
| 5 | W | Ê | N | E | ■ | N | O | G | O | N | | | | | | |
| 6 | E | ■ | A | L | A | ■ | R | U | X | A | | | | | | |
| 7 | N | A | D | A | B | V | E | H | I | L | | | | | | |
| 8 | D | ■ | E | K | Î | P | ■ | D | L | ■ | | | | | | |
| 9 | ■ | L | W | E | D | ■ | F | A | K | S | | | | | | |
| 10 | B | E | X | T | E | W | A | R | ■ | O | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Şemamê şemamê...






Ez Liyan im. Di jiyana min de tiştê herî zêde ez jê hez dikim, wênekêşan û temaşekirina filman e. Bi taybetî ez zêde ji filmên Mr. Bean hez dikim, ji ber ku filmên wî gelekî kêfê didine min. Ez gelekî ji strana kurdî ya "şemamê" jî hez dikim, ji ber ku stranek bi hereket e. Ez niha di pola duyem de dixwînim û bi almanî, kurdî û hinekî jî îngilîzî dizanim.






# Xewa zivistanê

Dema hewa sar dibe, an jî pileya sermayê dikeve bin sifrê, gellek ajel weke rengekî xweparastinê û xercnekirina enerjiyê, germahiya laşê wan dadikeve pileyek gellekî nizim. Herwiha lêdana dilê wan jî gellekî nizim dibe. Heta ku germahiya derdora normal dibe, bi vî awahî ev ajel bê bizav dimînin. Ajelên weke kîso, mar û marmarok bi vî rengî dikevin xewa zivistanê. Li cihekî ewle û bi rengekî xwebadayî, kîso heta 5 mehan di xewa zivistanê de dimîne.



# Serêşî



Carnan serê te wiha diêşe û tu nikarî li ti tiştekî din bifikirî, ji bilî serêşana xwe?

Hinek caran eger tu kêm vexwî, ev dikare bibe sedema serêşê. Wê demê av, çay, an jî tiştên din vexwe.

Herwiha tu dikarî biçî derve jî, hinekî hewaya pak bistînî û bimeşî. Tuyê bibînî, laşê te jî wê rehet bibe.

Eger tu zêde li ber televizyon an jî kompûterê bimînî, wê demê damarên te tên girtin û serêşî çêdibe. Divê tu zêde li ber televizyon an jî kompûterê nemînî, rojê herî zêde saetekê.

Dema serê te zêde êşiya û te nema debar kir û bêyî derman serêşa te baş nebû, wê demê divê tu herî cem doktor.



Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafik